Destveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 137
21'ê Hezîrana 2010
Buha: 150 Tûmen

agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## 30 Şaxe Gul Pêşkêşî Dengê Heqbêjiya Kurdistana Îranê

27'ê Cozerdan (17'ê Hezîran)'a îsal, 30 sal bi ser temenê Radyo Dengê Kurdistana Îranê de derbas dibe. Xebata pir ji şanazî a vê dezgehê tu gumanek ji rastbêjî û heqbêjiyê ji guhdarên xwe heta neyaran re jî nehiştiye û karnameya rûsor a xwe bi şanazî û deskevtên pir mezin xemlaniye û her ku diçe, guhdarên xwe evîndartir dike. Pîroz be 30'mîn salvegera xebata bêrawestiyan a wî dengê zelal û heqbêj.

# Bazneya Dorpêçên Li Dijî Îranê Tengtir Dibe




## Tehrîmên Nû, Diyariya Civaka Cîhanî Bi Rejîma Îranê

Piştî wê ku Konseya Ewlekar ya NY, biryarnameya 1929 li dor tehrîmên gera 4'mîn li dijî Îranê pesend kir, her yek ji Amerîka û Yekîtiya Ewropa, Usturaliya, Kureya Başûr û Japonê jî bi cuda tehrîm xistine ser Îranê. Ew li ser vê baweriyê ye ku divêt tehrîm bi qasekê dijwar û giran bin ku Komara Îslamî bi çokde bîne û neçar bi devberdan ji pirogramên xwe bike, YE'ê tehrîm xiste ser seneta neft û gaza Îranê. Kongireya Amerîkayê jî Wezîrê Berevanî û Fermanderê Besîc û herweha sîstema gemîvanî şirketên girîdayî sipahê xiste nav lîsteya tehrîmên xwe. Ji aliyek din ve jî welatên Qezaqistan û Turkmenistanê riya şandina nifta xwe, guherand û niha riya şandina nifta wan du welatan li bendera Nuforosîk a Rosiyê li beravên behra Reş de ye. Ew guherîne seba nîgeraniya tehrîmên Şêwra Ewlekar li ser abûriya Îranê bûye.

## Rejîma Îranê Rojhilata Navîn Ber Bi Şer Dibe



Gemiyên ku Îranê bi navê "alîkariyê", lê bi armanca şikandina dorpêçên ser Xezê, afirandina aloziyan û kûrtir kirina kirîzan ber bi xezeyê şandin, dikare bibe sedema şerekî mezin di navbera Îsraîl û Îranê de. Îsraîlê da zanîn ku bi tu awayî rê nade van gemiyan. Çunku renge weke her car Îran alîkariyên locestîkî û silahan ji Hemasê re bişîne. Îranê jî ragihand: Êrîşa Israîlê bo ser gemiyan, wateya îlan kirina şer di navbera Îran û Îsraîl digehîne.

## Yêkêtiya Cîhanî Li Hember Îranê De



56 welatên Cîhanê, nerazîbûna xwe bi nisbet binpêkirina mafê Mirov li yek sala derbasbûyî di daxuyaniyekê şermezar kirinê de nîşan dan. Nûnerê Norwejê bi nûneratiya wan welatan li civîna Şêwra Mafê Mirov li Jinêvê de Komara Îslamî mehkûm kir û daxwaza şandina bilez û şandeya mafê mirov bo Îranê kir. Komara Îslamî heya niha 30 car ji aliyê NY ve bona pêpeskirina mafê mirov hatiye şermezar kirin.

## Peyama Pîrozbahiya Sekreterê Giştî Ê PDKÎ
## Bi Hilkevta Dawîhatina Sêyemîn Kongireya Yekîtiya Nîştimanî A Kurdistanê

Rêzdar Mam Celal, Sekreterê Giştî ê Yekêtî Nîştimanî a Kurdistanê!

Tevî silav û hurmet!

Bi hilkevta dawî hatina serkevtiyane a sêyemîn Kongireya Yekêtiyê û hilbijartina dûbare a cenabê te wek Sekreterê Giştî, ez pîrozbahiyên xwe û rêberiya PDKÎ pêşkêşî cenabê te û hemû endamên rêberiya Yekêtiyê dikim.

Hevîdarim peywendiyên dostane yên navbera Yekêtî û PDKÎ xurt, berfirehtir û di pêşdeçûnê de bin.

**Rêz û hurmeta dubare**
**PDKÎ**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**19’ê Hezîrana 2010 a Zayînî**
**29’ê Cozerdana 1389 a Rojî**




## Daxuyaniya Deftera Siyasî, Derheq Hawrîdanek Ji Birêveçûna 10’mîn Gera Maşkanêya Hilbijartinên Serkomariya Îranê Û Encamên Wê

Rejîma Komara Îslamî a Îranê salekê berî niha û di roja 22’ê Cozerdana 1388’ê Rojî de, 10’mîn gera maşkanê ya hilbijartina Serokkomariyê birêve bir.

Di beriyê de Şêwra Nobedar di nav 1400 kesên ku navnivîsî kiribûn, tenê kêrahtîbûna 4 ji wan pesend kir û yên din red kirin. Ew 4 kes ku naskirîtirîn moreyên rejîma Komara Îslamî bûn, pêkhatibûn ji: Mehmûd Ehmedînejad, Serokkomarê wê demê, Mîr Husên Mûsewî ku di dema jiyana Xumênî û şerê Îran û Îraqê de, 8 salan Serokê Hikûmetê bû, Mêhdî Kerobî ku di dema bi nav zêrîn! a Reformxwazan de Serokê Perlemantoyê bû û Muhsin Rezayî jî ku pêtir ji 10 salan fermanderê giştî yê Spaha Pasdaran bû.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di daxuyaniyekê de seba wê ku rejîm îzna wê bi xelkê nade ku heta di nav wan 4 kesan de jî kesê dilxwazê xwe hilbijêrin û berî hilbijartinê, Serokkomarê pêşerojê hatiye diyarîkirin û tu giringî û pûteyek bi dengê xelkê nahê dayîn û tu nîşaneyek ji hilbijartinekê ku aliyê kêm li gel standardên hilbijartineke azad de li hev bê, weke hemû hilbijartinên bi wî awayî di derbazbûyî de ku ew tişt nayê xuyakirin, ew hilbijartin baykot kir. Lê rejîmê weke herdem bi pîlanên xwe û yek ji wan jî birêvebirina çend nîqaş ‘’munazire”ên televîzyonî di navbera wan bi nav berbijaran de, karî hejmarek zaf ji xelkê Îranê ji bilî Kurdistanê, bikşîne ser sindûqên dengdanê.

Her çend di demjimêrên destpêkî ên piştî hilbijartinê de, Mûsewî û alîgirên wan bas ji serkevtina xwe dikirin û piropagende ên berçav birêxistin, lê piştre bi awayek fermî dezgehên çavdêr bi ser wê maşkanê de, her wek di şîroveyên Partiya Demokra a Kurdistana Îranê de bas jê hatibû kirin, berbijêrê cihê pesenda Wîlayeta Feqîh, anku Mehmûd Ehmedînejad bo gerek din a Serokkomariyê bi berbijêrê serkevtî ragihandin.

Bi ragihandina encamên wê hilbijartinê, li Tehran û çend bajarên din neraziyên encama hilbijartinan derketin ser şeqaman û bi piştevanî ji Mûsewî li dijî encama wê hilbijartinê dirûşm dan û pirsiyar ji çarenivîsa dengên xwe kirin û daxwaza hilweşandina encama wê hilbijartinê û hilbijartinek ji nû ve kirin. Bi giştî berbijêrên reformxwaz ew hilbijartine bi kûdeta nav birin. Lê piştî çend rojan nerazîbûn û xwenîşandan ji aliyê xelkê ve berî ragihandina fermî ya encama hilbijartinê ji aliyê Şêwra Nobedar ve serencam rêberê Komara Îslamî di civînek




giştî de carek din piştevaniya xwe ji berbijêrê dilxwazê xwe, Mehmûd Ehmedînejad nîşan da û ew hilbijartin bi serkevtinek din ji bo rejîma xwe da zanîn. Piştî wê helwesta rêberê Komara Îslamî a Îranê, berbijarên dûrxistî ên reforxwaz û alîgirên wan bi nav Tevgera Kesk dirêjî bi nerazîbûna xwe dan û rejîmê jî li hember wan xwenîşandanan de siyaseta tepeserî, givaş û tund û tûjiyê şopand û hejmarek berbiçav ji xwenîşanderan rewaneyê girtîgehên bixof yên xwe kir û hovane hatin azar û îşkencedan. Ew siyaseta dijî mirovî a rejîmê li seranserê cîhanê de deng veda û civaka navnetewî bi taybetî kom û komelên mirovdost hejandin û bûye mijara ragihandinên navnetewî û mehkûmkirina Komara Îslamî a Îranê ji aliyê wan ve. Ew kiryarên dijî mirovî ku hesta hemû însanên azadîxwaz û mafxwaz birîndar kiribû, bûye sebebê wê yekê ku qatên civakê bi dirûşmên xwe ve tevlî wê nerazîbûnê bibin. Tevî wê ku rêberên Tevgera Kesk dijî dirûşmên pêkhateşikên bûn û daxwaziyên wan di çarçoveya dest ji kar vekişandina Ehmedînejad û hin ji daxwazên din weke birêveçûna Yasaya Bingehîn a Komara Îslamî bûn, lê di dirêjiya wan xwenîşandan û meşên nerazîbûnê de û di mehên şûndatir de, xelkê azadîxwaz yê beşdar di xwenîşandanan de berevajî xwast û daxwaziyên rêberên Tevgera Kesk, dirûşmên xwe arasteyî Weliyê Feqîh, Yasaya Bingehîn û li dawiyê de Komara Îslamî bi hemû pêkhateya xwe ve kirin. Ew dirûşmên radîkal, lerzîn xiste peykera Komara Îslamî û rêberên wê, lewma gelek hovane dest dane tepeserî û êrîşên ser xwenîşanderan û şehîdkirina keç û xortên azadîxwaz ên welatê me ku di nava wan şehîdan de çend kes ji keç û xortên azadîxwaz ên Kurd jî hebûn.

Di wê qonaxa hestyar de, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di ragihandinek fermî de piştevanî ji bizava azadîxwazane ya xelkê mafxwarî û maf pêpeskiryê welatê me kir, li gel malbatên serbilind ên şehîdan hevderdî kir, daxwaz ji kom û komelên mirovdost kir ku ji bo parastina canê girtiyên siyasî bi hewara wan de bihên û ragihand ew bizave di demekê de dikare bi armancên xwe bigîje ku bo hiloşîna rejîmê xebatê bike û li ser pêşdebirina piroseya demokrasiyê û dabînkirina mafên netewî ên gelên Îranê pêdagir be. Çunku di çarçoveya wê sîstemê de, tu guhertinek bi qazanca xelkê nahê kirin. Di vê derheqê de, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di Pilînoma Xermanana 1388’ ê Rojî de, dawîn analîz û şîrove li ser rewşa siyasî a Îran û Kurdistanê kir û di wê şîroveyê de, ku siyaset û helwestên rêberên Tevgera Kesk berevajî xwast û daxwaziyên bizava rizgarîxwaziya welatê me bo rizgarbûn ji destê dîktatorî û kevneperestiyê de bû û sedema tevlînebûna netewên mafpêpeskirî û tex û qatên din ên civakê ku heya wê demê tevlî bizavên nerazîbûnê nebibûn, vegerande ser wan kêmasiyan. Ji wan girîngtir jî, nebûna rêberiyek demokrat û biryarder di wê bizava nerazîbûnê de, xalek din a lawaz, diyar û berçav bû. Piştî wê şîroveya siyasî, Pilînomê biryar stand ku her wek siyaseta xwe ya berê, em dê piştevanî ji bizava sekolar û pêşkevtî ya welatê xwe bikin ku armanca wê, guhertinek bingehîn, hiloşîna rejîma Komara Îsalmî û damezirandina sîstemeke demokratîk û federalî be û mil bi milê hêzên siyasî ên Îranê,

emê dirêjî bi xebat û tekoşîna xwe bidin û bi geşekirin û pêşveçûna wê xebata sivîl û gelî, û berîtirkirina qada tekoşîn bê dudilî û rarayî bûnê heya gihîştin bi armancên wê, emê berdewam bin.

Piştî derbazbûna salekê bi ser maşkanêya hilbijartina gera 10'mîn a Serkomariyê de, rejîma Komara Îslamî a Îranê sermestê serkevtina pîlana xwe ye û renge di wê xeyalê de be ku bi kuştin, girtin, îşkencê û ... kariye xelkê nerazî bêdeng bike. Lê gellek diyarde nîşan didin ku hêza berxwedana xelkê li hember rejîma pîlan û tepeserkar de bihêztir û zîndîtir ji salek berî niha ye û di rewşek libar de dê bihêztir û pir givaştir ji derbazbûyî serî hilde, berevaj jî, rejîm di vê midehê de pêtir ji hemû demekê bi destê ew kirîzên navxweyî û derveyî ku di yek sala borî û salên berê de afirandiye, bêçare maye û pêşerojek pir xerabtir ji niha jî li bendê ye.

Ev tevgere jî bona wê ku di vê serîhildanê de tûşî wan lawazî û kêmasiyan nebe, zûtir bigîje encamê û têçû û baca serkevtinê û dema wê jî kêmtir be, hewce ye hemû xelkê Îranê û bi taybetî rêxistinên siyasî bi hûrbînî û bi çavek rexnegirane ve mêzeyî bizava yek sala derbazbûyî bikin. Di vê derheqê de, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li ser vê bawerê ye ku:

**1:** Beşdariya xelkê di dawîn hilbijartina Serokkomariyê de gavek şaş bû, çunku encamên wê bi qazanca rejîmê bidawî hat. Bêguman, beşdariya berbiçav a xelkê di her hilbijartinekê de bi yek ji nîşaneyên rewatî û meşrûîyeta rejîmê tê hesibandin, jiber wê yekê jî di wê demê ve heya niha bi sedan car desthilatdarên rejîma Komara Îslamî ew beşdarî li hember xelkê cîhanê û xelkê nerazî yê Îranê de bikar aniye û bi nîşana pesendbûna hikûmeta xwe di nav piraniya xelkê de nîşan daye. Lewma hewce ye di hilbijartinên pêşerojê de jî dema ku hest bi wê yekê bikin dengê wan tu buha û giringiyek di encama hilbijartinê de nine, nikarin deng bi berbijarê cihê pesenda xwe bidin û bi kurtî kêmtirîn nişaneya standarda hilbijartinek azad li holê de nine, bila weke xebatek sivîl mifahê jê bistînin û beşdariyê têde nekin. Ji bo rejîma Komara Îslamî gelek sirûştî ye dema hest bi wê yekê bike ku di hemû rewşekê de xelik rû ji sindûqên dengdanê dikin, nûnerê dilxwazê xwe ji sindûqan de derxîne.

**2:** Hewl û tekoşîna 10 saliya reformxwazan serbarê nîşandana wefadariya bi rejîmê bi taybetî di yeksala derbasbûyî de, carek din ew rastî eyan kir ku di vê rejîmê de îmkana reformê tune ye. Lewma pêwîste êdî xweliyê nekin nav çavê xelkê, wan ji rê dernexin û xwîna azadîxwazên Îranê di wê riyê de bi xesar nedin. Çunku rejîm li midehê desthilatdariya neguher ya dehan salî a xwe li piratîk de eyan kiriye ku bidestxistina azadî û demokrasiyê ku xwasta xelkê Îranê ye, bi hebûna wê rejîmê bidest nahê û bo gihîştin bi wê xwastika rewa, pêwîst e hemû hêz û şiyan di riya hiloşandina rejîmê de bihên bikar anîn.

**3:** Nebûna bernameke rohn, yek ji xalên lawaz ên herî berbiçav a Bizava Kesk bû ku heya niha jî pêve xuya ye, ligel wê yekê ku rêberên naskirî ên wê bizavê di her boneyekê de axaftin e û xelkê jî di şeqaman de dirûşm qîrandine, lê tu yek ji wan bername ninin û tu bizavek jî bi bê bername ser nakeve.

**4:** Ji bo guherîna rejîmê û anîne serkar a hikûmetek ku xwast û daxwazên tex û qatên civakê dabîn bike, rêberiyek biryarder û demokrat pêwîst e. Rêberiyek ku berpirs û rexnehilgir be û ligor pêşdeçûna bizavê bikare rê û cihên guncaw bo dirêjîpêdan bi xebatê diyarî bike, çavnihêriya rizgarkirina xelkê ji destê dîktatoriya rejîmê ji kesên ku rojane li ser baweriya xwe bi Komara Îslamî pêdagirin, bê bingeh e, eve jî yek ji xalên lawaz yên Bizava Kesk bûye ku heya niha jî bi wî derdî dinale.

**5:** Dicih demana bizavê tenê di şêweyek ji xebata sivîl - xwenîşandan – û mifahwernegirtin ji xebatên din ên bi wî awayî, xincî wê yekê ku hêdî hêdî xelkê mandî û westiyayî dike, hêzên tepeserkar ên rejîmê jî bi amadeyiya tewaw dê givaşan bixin ser wê xebatê û pîlanan bo tepeserkirina wê dabirêjin, lê guherîna zû bi zû ya şîweya xebata guncaw dê hêzên rejîmê bixapîne. Bo mînak em dikarin amaje bi xebata girev û mangirtina neçûne serkar di Kurdistanê de bikin ku di roja 23' ê Banemera 1389' ê Rojî de piştî îdama 5 têkoşerên siyasî birêve çû.

Di dawiyê de, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bo gihîştin bi wê armanca siyasî, carek din tekez û pêdagirî li ser hevkarî û hevxebatî li gel hemû hêzên siyasî û pêşkevtinxwaz ên Îranê dike û vê hevkariyê bo hiloşîna Komara Îslamî a Îranê û bi mifahstandin ji hemû metod û şêwazên xebatê bi hewcehiyek siyasî dizane.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**Cozerdana 1389' ê Rojî**
**Hezîrana 2010'ê Zayînî**

# Daxuyaniya Çend Part Û Rêxistinên Siyasî Ên Kurdistanî Li Hember Topbarankirina Sînorên Herêma Kurdistanê

Hevwelatiyên rêzdar!

Rêxistinên navnetewî ên aştîxwaz û parêzerên mafên Mirovan!

Her wek haydarin, hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê, piştî heyamekî zêde topbaran û bombarana Sînorên Herêma Kurdistanê niha heyamî çend rojane ku berevajiya hemû rê û cihên navnetewî, Sînorên Herêma Kurdistanê devera Hacî Omeran û bilindahiya Çiyayê Qendîlê bezandiye û li gor nûçeyên ragihandinên giştî, hêzên rejîma Îramê bi qasê çend "KM" ketine nav axa Herêma Kurdistanê û bêrehmane gundên wan li deveran topbaran û bombaran dike û zirar û xesarekî zêde a canî û madî bi xelkê wan deveran gihandiye. Her bi vê sedemê bi hezaran kes ji akinciyên deverên navhatî bo parastina canê xwe, mal û halê xwe bi cî hiştine û ber bi deverên din ên Herêma Kurdistanê derbider bûne.

Hemû aliyek haydar e ku Komara Îslamî a Îranê bo tevlîhevkirina raya giştî a navnetewî di derheq pirogirama çeka navikî û destdirêjiyên xwe bo ser mafên Mirovan û darvekirina biKom a neyarên siyasetên xwe li hûndirê Îranê her carê Şanoyekî li dardixe û pirogiramekî taybet pêktîne û di vî warî de wek desthilatekî kirîz afir û




cinayetkar bo hemû raya giştî hatiye naskirin.

Li aliyekî din ve, rejîma Komara Îslamî a Îranê cihgîrbûna hikûmeta Herêma Kurdistanê û berfireh bûna Pêvajoya demokrasiyê û tenahiya di vê herêmê de wek mezintirîn gef bo ser xwe dizane. lewma di destpêka avabûna hikûmeta Herêma Kurdistanê, berdewam hewil daye dest têwerdan li nav kar û barên vê Herêmê bike û di vî warî de xwe ji tu hewlekê neparastiye.

Lê hemû kiryarên han, vê rastiyê naguhirin ku kiryarên Komara Îslamî a Îranê bervajiya hemû urf û yasayekî navnetewî û rêzgirtin ji serwerî û serbixweyiya welatên din e û ev êrîşa bo ser deverên Herêma Kurdistanê bi eşkere binpêkirina serweriya welatê Îraqê û Herêma Kurdistanê ye.

Lewma em wek komîteya hevkarî a hêzên siyasî ên kurd û kurdistanê tevî şermezarkirina vê êrîşê bo ser deverên Herêma kurdistanê, daxwaz ji hemû raya giştî a civaka navnetewî û li serwey hemûyan jî rêxistina Netewên Yekgirtî dikin ku yekdeng û hevgirtî bi dijî wan kiryarên Komara Îslamî a Îranê bisekinin û helwêstekî jêhatî li xwe nîşan bidin.

Komîteya Hevkarî a hêzên siyasî ên kurd û kurdistanî:

**1-** PDK
**2-** Yekêtî Nîştimanî a Kurdisatanê
**3-** PDKÎ
**4-** Komeleya Şoreşgirên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê
**5-** Partiya Susyalîsta Kurdistanê (Bakûr)
**6-** Partiya Siyasî a Kurdistanê
**7-** Partiya Yekêtî a Demokrata Kurd li Sûriye (Yeketî)
**8-** Partiya Zehmetkêşên Kurdistanê
**9-** Partiya Kurdên Feylî

# Hevpeyvînek Taybet Bi Birêz Mihemed Nezîf Qadirî, Endamê Deftera Siyasî a PDK Îranê

**Hevpeyvîn: Agirî**

**Xwendevanên hêja!**

**Derheq bûyerên siyasî ên pêwendîdar bi Îranê li vê dawiyê de û herweha pirsên navxweyî yên wî welatî me bi derfet zanî ku ji nêzîk ve ra û helwesta PDKÎ ji zarê birêz Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê werbigrin ku li jêr de dikewe ber çavên we hêjayan.**

**Di çend rojên derbasbûyî de me dît ku Şêwra Ewlelar ya NY'ê biryarnameya 4'mîn ya dorpêçan dijî Komara Îslamî pesend kir. Cudahiya vê biryarnameyê bi yên berê çiye?**

Baskirin li ser mesela navikî a Îranê û helwestên saziya Navnetewî a Vejena Navikî û ew hewlên ku di çend salên derbasbûyî de bi nisbet qanikirina Komara Îslamî ji bo destberdan ji mehandina Uraniyomê, sekinandina programên navikî û herweha çûna dosyaya Îranê bo Civata Ewlekar ya rêxistina Netewên Yekbûyî û bi taybetî ew pêdagiriya welatên 5 +1, dosyaya etomî a Îranê gihîjande xalekê ku civaka navnetewî û endamên Şêwra Ewlekar ya NY'î bi awayeke pir micidtir wê pirsê bişopînin û biryar û helwestên jêhat li dor serhişkiyên Komara Îslamî û guhnedana wê bi hewlên dîplomatîk, bigirne pêşberî xwe. Giringiya biryarnameya 4'mîn a Şêwra Ewlekar de ku bi 12 dengên erê, 2 dengên na û 1 dengê bêalî hat pesendkirin, vedigere bo ser çend xalên esasî. Yekem, li helwesta siyasî a welatên Civata Ewlekar û Almanya de dengek yekgirtîtir yan hevahengiyeke siyasî a pêtir li gor biryarnameyên berê hebû. Bi taybetî yek ji meselên esasî yên wê biryarnameyê ev e ku îdareya Obama û Wezareta Karê Derve ya Obama karîn bi awayek li gor çavnihêriya xwe bi Çîn û Rûsiyayê ku berê zaf li ser tehrîmên li dijî Komara Îslamî micid nebûn yan bi awayekê asteng bûn li ser riya biryarên wê Civatê, bilivin. Herweha gelek caran jî seba nerazîtiya wan, ew biryar dihatin paşxistin yan civîn bêencam diman, lê li civîna vê carê de hevahengî û hevrêtiya Çîn û Rûsiyê bi Amerîka û endamên din ên Şêwra Ewlekar de berçavtir bû, Dûyem, nerazîtiya dewletên Tirkiye û Berazîlê bû ku li meha derbasbûyî de hewleke dîplomatîk ji aliyê wan ve bona razîkirina Îranê hat encam dayîn û di çarçoveya wan pêşniyazên ku saziya Navnetewî ya Vejena Navikî berê nîşan dabûn, Îranê bigihîjînin qenaetê ku daxwazên civaka navnetewî bipejirîne.

Li gel wê yekê ku Îranê di rûyekî de hin tiştbona çewaşekirina meselên siyasî di wî warî de û herweha bona bidestxistina demek pêtir pejirand, lê di kiryar de ew helweste û herweha ew mebesta ku Komara Îslamî di wê civînê de dişopand, pêtir xawkirina welatên 5+1 û herweha ew hewlên dîplomatîk bûn ku di çend mehên derbasbûyî de Amerîka hewil jêre dabû ku bikare bi dengek yekgirtî biryarek micid li ser Komara Îslamî li dor çeka navikî û tehrîmên pêtir li ser Îranê bidin.

Xalek bihêz a din di rastî de xwendin û têgihîştina wê mebesta riyakariyane ya Komara Îslamî bû ku di civîna Tehranê de şopand, jiber wê yekê, wan karî di wê meselê de destê komara Îslamî rû bikin û siyasetên xwe bona perawêz xistin û terîkxistina rejîma Komara Îslamî di asta navnetewî de dirêjî pê bidin. Ji aliyê din ve jî ew bawer in ku rejîma Komara Îslamî ewlehî û aramiya navnetewî û deverê tehdîd dike û armancek aştîxwazane li pişt wê piroseyê nine. Lewma ji bo hemûyan eyan bûye ku rejîma Komara Îslamî rejîmek nine ku bixwaze ji wê pirojeya Etomî mifahên aştîxwazane werbigre û di hewla bidestxistina çeka Etomî de ye.

**Bi bawera we ew biryarnameye çiqas dikare pêşî ji bernameyên navikî yên Îranê bigre?**

Komara Îslamî biryara xwe daye ku dixwaze bigihîje çeka navikî, lê ew givaşên navnetewî û deverî û herweha pesend kirina wan biryarnameyan renge di warê siyasî û di warê pêgeha dîplomatîka Îranê di asta navnetewî de bibe zext, lê eva jî siroştê rejîmên totalîter e ku siyaseta çavmiqandin ji yasa û rêsayên navnetewî digrin pêşberî xwe û dirêjî bi wan siyasetan didin ku armancên taybetî ên wan in ku gihîştin bi çekên navikî ye. Bona wê ku pêgeha leşkirî a xwe û balansa hêzê bi qazanca xwe biguherin. Çunku siroştê rejîmên dîktator, kevneperest û serberedayî, diyalog yan rêçareyên siyasî bona destberdan ji siyasetên dijî însanî yên wan nine û ew siyasetên ku girtine ber xwe bo gihîştin bi çeka etomî, bi bawera min dê her têde berdewam bin.

**Ew dijkiryarên Tirkiyê di peywendî li gel biryarnameya wê carê û herweha nizîkbûna li gel Îranê, bi raya we bo çi vedigere? Gelo bûna pirsek hevpar weke pirsa Kurd di Îran û Turkiyê de sebeba sereke ya nizîkbûna wê carê nagehîne?**

Ewa ku helwesta Tirkiyê çi armanceke siyasî li pişt de ye, nirxandin û nêrînên cur bi cur li ser hene. Yekem Partiya desthilatdar a Tirkiyê (AKP), bizavek Îslamî ye, rejîma Komara Îslamî jî naverok û mahiyeta wê eşkere ye ku rejîmek e bi navê Îslamê di deverê de mijûlê wan siyasetan e û eva xalek hevpar ya wan e ku di asta deverê de bikarin bihevre li ser hin pirsên fikrî û siyasî hevaletî bikin û bandorê li ser devera Rojhilata Navîn û bizavên Îslamî ên deverê çê bikin û bi qazanca xwe mifahê ji rewşa siyasî bistînin. Duyem, ji ber ku niha di Rojhilata Navîn de bedîlek li dor çareserkirina pirsgirêkan tune ye ku weke dewletek bihêz a Rojhilata Navîn temsîla berjewendiyên giştî ên Rojhilata Navîn û her yek ji welatên xwe bikin, lewma Tirkiye dixwaze nûneratiya vê boçûnê bike di deverê de û ji hêlekê ve di çareserkirina pirsa Îsraîl û Sûriyê de gavan bavêje, ji aliyek din ve li gel Îsraîl û Pakistanê rêketinên Ewlekarî wajo bike, ji hêlek din jî li gel welatên Erebî peywendiyên xwe asayî bike û hewil dide peywendiyek demdirêj li ser bingeha bejewendiyên giştî ên xwe damezirîne. Ji aliyek din ve jî derheq mesela Felestînê de dixwaze wisan nîşan bide ku



piştevan û piştgirê Felestînê ye li himber serberedayiyên Îsraîlê de, herweha siyaseta rexnegirtin ji siyasetên rojava bi taybetî Amerîkayê seba piştevanîkirin ji Îsraîlê heye. Lewma Tirkiye komek meselan teqîb dike û dixwaze nîşan bide ku li Rojhilata Navîn de rewşek baştir heye û dikare di siyaseta deverê de bandor hebe, dikare li pirsa Etomî a Îranê de alîkar û piştevanek be bo Rojava û Amerîka li dor çareseriya vê meselê de. Wisa nîşan dide ku dikare welatên Erebî han bide bo çareseriya arîşeyan ji riya diyalogê ve, û ji hemûyan girîngtir jî di asta navnetewî de bi taybet bi nîsbet Yekîtiya Ewropa, Amerîka û Birîtanya ve, pirsa endametî di Yekîtiya Ewropayê de heye û dixwaze nîşan bide ku li Rojhilata Navîn de li rewşek baştir û bandorek berçavtir heye û ger bibe endam di YE'ê de, dikare beşek ji givaşên navnetewî û parek ji arîşe û tengasiyên deverê çareser bike û bibe piştevanek menewî bo wan siyasetên ku niha dişopînin bona wê ku di asta Yekîtiya Ewropayê de pêtir cîpiyê xwe qahîmtir bike û bala welatên Ewropayê bo aliyê xwe rakêşe. Herweha li Turkiyê niha Partiyek Îslamî desthilatdar e û dixwaze bêje Rojava û Ameîkayê, Îslam her ewe nine ku Elqaîde, Cîhad, Hemas û ...qala wê dikin, terorê dikin û siyaseta tundûtuj birêve dibin û hemû kesê wek yek dibînin, lewma AKP' dixwaze xwe wek mînakek Îslama nermrew bi Amerîka û Rojava nîşan bide û bibêje ku em dikarin di çareseriya pirsgirêkan de bibandor û bi tesîr bin.

**Kek Mihemed Nezîf, her wekî we jî îşare pê kir, niha Komara Îslamî di asta navnetewî de di bin givaşên pir zêde de ye, di navxwe de jî bi heman şêwe û em dibînin ku pêvajoya tepeserî û îdamê ji xurt kiriye, lê ji aliyek din ve êrîşek giştalî kiriye ser sînorên Herêma Kurdistanê û heta hêza peya jî derbasî axa Herêma Kurdistanê kiriye û sînor bezandiye. Armanca Komara Îslamî ji wê şerfirotinê bi Herêma Kurdistanê çiye?**

Derheq Herêma Kurdistanê û piroseya azadkirina Îraqê, rejîma Komara Îslamî di du bereyan de kar dike. Yekem di gel saziyên Şîie û saziyên desthilatdar di hikûmeta Îraqa Federal de peywendî heye. Ji aliyê din ve jî piştevanî ji rejîma Beis û Elqaîde dike bo



alozkirina deverê û bo givaşxistine ser hêzên Amerîka û di rastî de li vê derheqê de siyaseta Topiz û Gêzer girtiye ber xwe. Eyan e yek ji xwastên esasî ên rejîma Komara Îslamî, paşdekişyana hêzên Rojava û Amerîka di deverê de ye bona vala mana qada rimbazêna xwe. Di derbara Herêma Kurdistanê de jî wek mesela Kurd ew bi giştî li gel piroseya çareseriya pirsgirêka Kurd de ninin û dijatiyê pêre dikin û pê xweş ninin Kurd bigîjin destkevtên xwe ên siyasî û netewî bi taybetî destkevtek ku di Cîhana îro de bi awayeke berçav piştevaniya siyasî jê tê kirin û di wan çend salane de Kurdan nîşan daye ku dikarin îdareyek siyasî, nîştimanî û netewî û îdareyek ku sîmaya demokrasiyê pêve diyar be, cihgîr bikin. Ewa jî ligel siroşt, îdeolojî û siyaseta Komara Îslamî de nateba ye. Jiber wê yekê hemû carê meseleyekê dike hêcet bo desttêwerdana di kar û barên Îraq û Herêma Kurdistanê lewma êrîş dike, topbaran dike, xelkê ji gundên wan aware û derbider dike, saman û siroşta wê nîştimanê dişevitîne û xesar dide. Herweha yek ji siyasetên Komara Îslamî di kakila xwe de dijayetîkirin li gel piroseya azadiya Îraqê ye, dijayetî di gel Kurd e bo gihîştin bi mafên netewî ên xwe, dijayetîkirin di gel wan destkevtên siyasî, netewî û demokratîk e ku di Herêma Kurdistanê de hatiye cihgîrkirin, dijayetîkirin e li hember wê yekitiya ku Kurdan li hember terorîzm û paşmayiyên rejîma berê ya Îraqê û herweha ew peywendiyên dîplomatîk û siyasî yên berçav e ku niha dibinin îadreya Kurd li herêma Kurdistanê li gel dinyaya derve de heye û mesela Kurd bi giştî niha di asta navnetewî de bi giştî wek meseleyek esasî ketiye ber bas û di navendên siyasî, vekolînî û stratejîk de niha weke fakterek guncaw û baş ji bo berbi pêşde birina piroseya demokratîzasyonê di deverê de çav lê têkirin û hisab li ser tê kirin. Lewma tiştek siroştî ye ku Komara Îslamî jî çavê dîtina wan destkevtan nebe û bi awayên cur bi cur bixwaze givaşan bixe ser Herêma Kurdistanê, ji bo ku xelkê mijûlê pirsên lawekî bike û rûçikê pêşketî yê wê destkevtê kêmreng bike, lê Komara Îslamî dê di wê siyasetê de jî weke hemû siyasetên din ên xwe şikestê bixwe çunku hem mesela Kurd, hem destkevtên wê û hem rolê rêberiya Îraq û Kurdistanê ji bo kesê guman nehiştiye ku rêberiyeke şayiste û bi bername ye ku destkevtên wê jî destkevtên demokratîk in û di pêşerojê de jî dikare tesîr li ser beşên din ên Kurdistanê jî hebe.

**Em vegerin navxweyî welat û me dît di 22ê Cozerdanê de berevajî pêşbîniyan, xwenîşandanên berîn yên nerazîbûnê derneketin holê, hûn sedemên wê yekê li çi de dibînin?**

Me wek PDKÎ siyaseta tehrîm li hember hilbijartina sala derbazbûyê girte pêş, belge jî ew bû ku me jêwaye di çarçoveya wê nîzamê de tu yasamendî û tu usûleke yasayî nine bo hilbijartinek azad ku xelk bikare him berbijêrê xwe bide naskirin, him jî bi azadane dengê xwe bide, him jî çarenivîsa dengan jî bi wî awayî ku bixwe çavnihêrî lê hene, bikare tesîr û bandor li siyasetdanana welat de hebe. Ji aliyek din ve jî ew morên ku berbijêrên Komara Îslamî bûn û ji fîltera Şêwra Nîgehban derbas bibûn, hemû ew bûn ku di bizava 30 saliya Komara Îslamî de rolek berçav hebûne, tu ji wan ew ninin ku xelk pişta xwe bi wan qahîm bike yan bawera xwe bi wan bîne. Ew jî kesanek in ku destê wan rû bûye û di siyaset û cinayetên Komara Îslamî de rol û parek berçav hebûne. Lewma ew beşa xelkê jî di peywendî li gel wê meselê nerazîbûn nîşandan ku di hilbijartinan de beşdarî kiribûn û balê pawanxwaz li hember wan, helwesta tepeserî, girtin û kuştinê girte pêşberî xwe. Rewşek pêşhat ku dijberên Komara Îslamî û bi giştî Opozîsyona sekolar a Komara Îslamî derketin holê û li hember wê nerazîbûnê de tevlî wê pêlê bûn û dirûşmên radîkal dan ku çarçove û kakila sîstemê, Wîlayeta Feqîh û Yasaya Bingehîn nefî kirin û di kiryar de ew bizav, bizavek radîkal û sekolar bû û armanca wê xistina rejîma Komara Îslamî bû.

**Di yeksala derbasbûyî de çima ew bizav giştgîr nebû û nekarî di seranserê Îranê de pelê bihavêjê?**

Çunku bizava Kesk a reformxwaz di çarçoveya Komara Îslamî de siyasetê dike û dirûşmên wê teîda wan usûl û yasayan dikin ku 30 sal e xelk xebatê li himber de dike, meselen xelkê Komara Îslamî di tewawiyeta xwe de qebûl nine, wan digot "Komara Îslamî ne peyvek kêm ne peyvek zêde". Wan digot xeta Îmam, lê xeta Îmam xeta jînosayd, qetlîam, dadgehên sehrayî, tepeserî û cîhad li hember qatên civakê bûye. Wan digot berevanî ji Yasaya Bingehîn: Yasaya Bingehîn ku biçûktirîn ronahî têde nine bo çareseriya pirsgirêkan di Îranê de. Bi giştî dema ku ewane dirûşmên wan bin, netewên Îranê ku piraniya xulyaqeta Îranê pêk tînin, tiştek siroştî ye ku tevlî wê nerazîtiyê nebin. Saziyên demokrat û sekolar ku bi salan e xebatê dikin bo hiloşandina rejîma Komara Îslamî, tevlî pirosesê nebin, karker, jin, saziyên çep tevlî wê bizavê nebin.

Lewma siroştî ye ku wê bizave ne rêberiyek biryarder, ne bernameyek demokratîk, ne siyaseteke emelî û ne jî bawer bi xwebûn heye ku ev bizave radîkale pişta wê bigre û tûşî bêhîvîtiyê neke. çunku gava xelkê nebîne, siroştî ye ku xelk tevlî wê bizavê nabe. Ji hemûyan girîngtir di salroja 22 ê Cozerdanê de me dît, Mûsewî û Kerobî ragihandin ku ji ber "parastina can û malê xelkê" û izin nedana Wezareta Navxwe, bila xelk xwe ji xwenîşandan û derketine ser şeqaman xwe biparêzin.

**Gelo di rastî de ew paşdekişyan bo dilsojiya can û malê xelkê bû yan nebûna cesaretê li rû bi rûbûn tevî Ehmedînejad û Wîlayeta Feqîh de?**

Na, min jêwaye her roja piştî roja Qodsê û roja xwendkar, rêberiya sekolar a wê bizavê peyama xwe bi Mûsewî û Kerobî ragihand ku ew bizava di meydanê de, ne bizavek bo piştîvanîkirin ji Serkomarbûna Mûsewî û wergirtna dengan e ji bo ku Mûsewî bibe Serokkomar yan Kerobî. Li Kiryarên wê bizavê de xuya bû ku xelkê Îranê siyaseta derbazbûn ji reformxwazaên dewletî, Mûsewî û Kerobî girtine ber xwe. Lewma wan her di wê demê de pêdaçûn bi rewşa siyasî ya xwe de kirin û bi awayekê çira kesk dan Wîlayeta Feqîh û her wê demê jî ragihandin ku çunkî Welî Feqîh Ehmedînejad qebûl e, em jî nikarin qebûl nekin. Ku waye wan narastewxo teslîmbûna xwe ragihandin û niha jî siyaseta sazan li gel rejîmê girtine ber xwe. Wan niha jî jêwaye Komara Îslamî şemendefirek e li hêla xwe derçûye û bo vegerandina wê şemendefirê bo ser hêla eslî a xwe xebatê dikin. Eve jî li halekê de ye ku xelkê her ew şemendefire qebûl ninin, xelkê her ew sîsteme qebûl nine. Lewma eva ku di 22' ê Cozerdanê de ew helwîst girtin, di rastî de dana çirayek kesk bû bi rejîma Komara Îslamî. Lê xala berçav û esasî ew e ku ew nerazîbûnên di roja 22' ê Cozerdana îsal de berevajî raya Mûsewî û Kerobî hatin kirin û dirûşmên wan dijî Wîlayeta Feqîh û Komara Îslamî bûn, dirûşmên radîkal, diyarîkirî û armancên siyasî di pişt de hebûn. Eva jî bo piroseya siyasî ya wî welatî ku ji bo azadî, demokrasî, federalîzim û anîneserkara nîzameke demokratîk xebat dikin, peyama xwe gihand û nîşan da ku wê bizavê armanca siyasî ya diyarîkirî a xwe heye, ne armanca wê Mûsewî yan Kerobî û diyaloga di çarçoveya nîzamê û parastina Komara Îslamî de ye.

**Piştî mangirtina 23' ê Banemerê, rejîm çalakên sivîl û sinfî gazî û destbiser dike û dukanên wan dadixe. Gelo rejîm dikare bi wan givaş û şidetan ve pêşî ji geşekirin û xurtbûna peyama wê mangirtinê bigre?**

Ev bizava siyasî ya Kurd 30 sal e berdewame. Armancên bizava rizgarîxwaziya Kurd diyar in, rizgariya netewî, temîna demokrasiyê, dadpewerî û pêkanîna jiyaneke bextewerane ji bo qatên civakê di Kurdistanê de. Kurdistan her wek derbasbûyî qelaya dakokîkirin ji temîna demokrasî û bidestxistina mafên demokratîk ên gelên Îranê bûye. Lewma mangirtina xelkê Kurdistanê çend armancên diyarîkirî hebûn. Yekim, rejîma Komara Îslamî re bêje ku me peyam û daxwaza xwe heye. Duyem, bizava me bizaveke netewî, nîştimanî û demokratîk e li hember her zulm, zorî û çavsoriyekê de em bêdeng û bêhelwîst nabin. Her wek me dît ku xelkê Kurdistanê helwestek pir hêja û şayiste girtine ber xwe, û ji hemûyan girîngtir bi bizava Kesk jî ku Mûsewî û Kerobî xwe bi zimanhalê wê dizanin, rabigehînin ku em di demekê de dê piştevanî ji bizaveke siyasî bikin ku xwedî rêberiyek biryarder û bernameyek siyasî û demokratîk be û bi bizava seranserî ya Îranê jî ragihand ku em bi wî awayî di meydana xebatê de ne. Hêz û şiyana me û bernama me piştevanê wê bizava sekolar û demokrat e ku xebatek berdewam di dest de heye û pêtir ji 30 sal e li hember rejîma Komara Îslamî de di meydana xebatê de ye.

**roja Pêncşemî (17'ê Hezîranê) 40 roj bi ser sêdaredana girtiyên siyasî ên Kurd derbas dibe, lê hêj rejîmê termê wan şehîdan teslîmî malbatên wan nekirine, hûn sedema wê yekê bo çi vedigerînin?**

Eva siroştê rejîmên dîktator e û tu car li hember xelkê de bersivder nebûne. Dema ew tekoşerên siyasî bê sedem girtin, bê dadgehî, bê parêzer, bê bihorandina qonaxên yasayî bo berevanî kirin ji xwe û îzinnedan bi malbatên wan û heta wunda kirina cihê hepsî kirina wan ew îdam kirin, siroştî ye ku termên wan jî nede malbatên wan. Ji aliyê din ve jî xelkê her wekî nîşan da nikarin li hember wê cinayetê bêdeng bin û helwest girtin, lewre rejîmê tirs heye ji helwest û îrada xelkê û ji berbirûbûn li gel xebata cemawerî û nerazîtiyên giştî li himber wê cinayetê. Lewma min jêwaye rejîma Komara Îslamî wan terman nade, tirs heye ji helwesta cemawerî.

Her wek dibînin niha ew welatên ku di dema xwe de rejîmên dîktator têde desthilatdar bûne, her roj em şahîdê wê yekê ne ku çendîn gorên bikom tên dîtin. Ewa jî nîşana wê ye ku di dema xwe de ew xelke hovane jînosayd, qetlîam û şehîd kirine, hemû girtiyên siyasî bûne ku deste deste şehîd û binax kirine, lê niha dibînin destê wan rû dibe û cesed tên dîtin. Komara Îslamî jî yek ji wan rejîmên dîktator û tepeserkare ku bi hezaran gorên bikom niha di bin desthilata wê de hene û girtiyên siyasî îdam kirine. Sala 1367 ê pêtir ji 5000 girtiyên siyasî îdam kirin, û termên wan bi malbatên wan nehatin dayîn Dema bas ji girtiyên Xaweran û çendîn gorên bikom ên din tê kirin, nîşana wê yekê ye ku Komara Îslamî li hemû cinayetan de cîdestê wê diyare.

**Me xincî spasyê tiştek nemaye eger we gotinek hebe?**

Belê spas ji bo wê derfeta we Em weke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ku di derbasbûyî de me bi bernameyek siyasî û helwîstek jêhat xebat kiriye û di pêşerojê de jî her ew siyaseta me de berdewam be, em piştevanî ji bizava azadîxwaziya gelên Îranê, ji xebata siyasî, sivîl û ya hemû NGO û saziyên siyasî dikin û amadeyî hevxebatî li gel hemû wan hêzên siyasî û pêşketî in ku niha di meydana xebatê de ne. Me jêweye ku di çarçoveya rejîma Komara Îslamî de tu guhertinek bi kiryar bi qazanca xelkê nine. Lewma take rê, hevxebatî ye li gel hêzên siyasî ên Îranî bo hiloşandina Komara Îslamî û cihgir kirina sîstemek demokratîk û federalî.

## Rojev

# Di 80'mîn Salvegera Şehîdkirina Bavê Nasyonalîzma Kurd De



**Selîm Zencîrî**

Her çiqas ku kuncê "Rojev"ê taybet e bi mijarên girîng yên roj û ji mijarên dîrokî û lêkolînî bi dûr e, lê ji ber ku derçûna vê hejmarê hevdem e li gel 80'mîn salvegera şehîdbûna serok û rêberekî kurd ku gelek ked, zehmetî û nirx ji kurd û kurdayetiyê re daye, ne hêsan bû ku em bi sanahî li ser de derbas bin. Lewma her çend bi kurtî jî be, ezê hewlê bidim ku awirekê li ser kar û xebatên wî şehîdî vedim.

Simayîl Axayê Şikak, berniyas û naskirî bi Simko, yek ji wan şoreşvan û rêberên azadîxwaz di dîroka berxwedan û xebata rizgarîxwaziya kurdistanê de ye ku xwedî qedr, rûmet û xebatek berçav e. Ew piştî mirina bavê xwe bû serokê eşîreta Şikak û li demek kin de karî kêrhatî, cesûrî, mêrxasî, egîdî û şoreşvaniya xwe îsbat bike û ji kesekî bênav û nîşan re bibe serokekî mezin, biwêr û xwedî hêzek mezin a leşkirî û herweha bibe rûgeha kurdan. Simko rêberekî azadîxwaz, siyasiyekî bîrtîj û dûrbîn, şoreşvanekî bi ezmûn û dunyadîtî, sowarçakekî çalak, welatparêzekî pêşketinxwaz, û li heman hal de jî şervanekî netirs, hişyar, bi bawer û bi helwest bû ku bi nirxandin û berhevdana li gel wî serdemê, bêmînak bûye. Simko ji ber qehremanetî û serketinên li dû hev yên xwe karî zû cihê xwe li nav dilê gel de veke û piştevaniya wan bo aliyê xwe rakişîne û pêgeha civakî û siyasiya xwe jî bilind û qahîm bike.

Simko piştî dawîhatina şerê cîhanî yê Yekem, bi mifahstandin ji hevkêşe û bûyerên derdorê bi taybet li Tirkiya û Îraqê de û bi avakirina federasiyona eşîretan, derfet bi girîng zanî deselatek herêmî (lê ne bi organîzasyonek rêxistinî) ava bike û hemû deverên bakûra Kurdistana Îranê bixe bin desthilata xwe û hêdî hêdî desthilata xwe berfirehtir bike û bi vê çendê jî nasyonalîzma kurd û hesta netewî bipişkivîne. Bi wateyek din çend xalên esasî di teyîsîna agirê serhildana Simkoyê Şikak de bi tesîr û karîger bûn. Weke: Lawaziya Hikûmeta nawendî li Kurdistana Îranê de, nifûz û bandora dewletên bihêz yên Rûsiya, Firansa û Îngilîs li wir, bişkivîna hesta netewî û bîra azadîxwaziya kurdan, zulm û zoriya dewleta Îranê li ser malbata Simko (kuştina bav, bira, bapîr û xizmên wî bi nemerdî) û li hember de jî geşbûna hesta tolhildana Simko ji karbidestên dewleta Îranê.

Simko li çend salên yekem yên desthilatdariya xwe de pir baş pêş ket û serketinên mezin li warê leşkirî de tomar kirin, di warê civakî û siyasî de jî pêgeha xwe jorde bir û wekî lehengekî kurd dihat dîtin. Herweha li warê rewşenbîrî û kulturî de jî gelek gav avêtin û kar û xizmetên bêmînak encam dan. Li sala 1912'an de, kovarek mehane bi navê Kurdistan li Urmiyê de weşand. Sala 1913'ê de Komeleya Cîhandaniya Kurd bi hevkariya Ebdulrezaq Bedirxan li Xoyê de ava kir û ji riya wê ve jî, yekem qutabxaneya modern a kurdî di heman salê de ava kir. Sala 1919'ê rojnameyek hefteyî bi navê "Roja Kurd" ku piştre bûye "Kurd" û organa fermî û zimanhalê desthilata wî bû, derxist. Herweha Çapxaneyek bi navê Xîret li Urmiyê damezrand û ..., Bi vê çendê jî Simko bûye alahilgirê şoreşa çandî, şaristaniyeta modern û bavê nasyonalîzma kurd li Kurdistana Îranê de. Lewma ew kar û xebatên siyasî û çandî yên Simko bi qasê ku bi dilê kurdan bû, ewqas jî dibûye xorega nerihetî, tirs û kerb û kîna desthilatdarên Îran û Tirkiyê û heta dawiya jiyana xwe bi sam û bi heybet jiya.



Simko li heyamê desthilatdariya xwe de serbarê wê ku çend caran tûşî şikest, derbiderî û koçberiyê bibû, lê tim hewil dida bi dewletên biyanî, bi taybet Îngilîs û Soviyetê re pêwendiyên siyasî pêk bîne û bala wan bo piştevanî ji serxwebûna Kurdistanê û çareseriya pirsa kurd rakişîne. Lê helkevta jeopolotîk a kurdistanê û berjewendiyên aborî û siyasî yên hevpar yên wan tim asteng bûn. Ji hêla din ve jî bi bişkivîn û vegeşîna nasyonalîzma netewên serdest li Îraq, Tirkiye û Îranê û bihêzbûna wan li hundurê xwe de, hêdî hêdî bazneya zext û givaş û dorpêçên li ser kurd û tevgera Simko dihat teng kirin. Çunku hevdem li her sê welatan de serhildanên kurdan hebûn û çunku Riza Şa bi piştevanî û hevkariya rasterast a Îngilîsan hatibû ser kar û li Îraqê de jî bi heman şêwe Îngilîsî serdest û pişetvanê dewleta wê bûn. Ji ber wê ku pêwendiyên wan bihevre têk neçin, amade nebûn ku pişta tevgera rizgarîxwaz a kurd bigrin. Herweha cihgîrbûna dewletên nasyonalîstî yên Tirk, Faris û Ereb ji wan re bibû hewcehiyek. Herweha wan dewletan serbarê pêwendiyên siyasî û dana puanên aborî bi hev, peyman û rêketinnameyên ewlehî jî wajo kirin. Bi taybet Riza Şa bona wê ku qada xebatê ji Simko berteng bike, peymanek 5 Salî li 22'ê Awrêla 1926'an, bi navê "Wedadiye" bi Tirkiya re girêda, ku du beşên wê peymanê taybet bûn bi lidûketina şoreşvanan û dabînkirina asayîşê bo sînorên hev û din.

Lewma Simko li nav hevkêşeyên siyasî yên li navbera hêzên Soviyet, Îngilîs, Tirkiye û Îranê de tûşî sergêjiyê bibû û li dan û standinên wan de gerr gihîştibû lîstina bi karta kurd û bi taybet şoreşa Simko, ji hêla din ve jî nebûna organîzasiyonek rêk û pêk, îxaneta serok eşîran û piştberdana ji Simko li demên tengasiyê de, zêdetir Simko tengav û li gihandina bi armancên xwe de bêencam hiştibû. Lewma li vê navberê de û li nav lîstika siyasî a wan dewletan de, Simko çiqas zîrek, hişyar û çalak bibûya, renge karîba pêşiya fetisîna xwe li vê bahozê de bigre. Li rastî de jî nekarî xwe li hember wan de biparêze, çunku çend sal bû ku li ser sînorên Îran, Tirkiye û Îraqê de bê hebûna tu piştevanekê, derbider û sergerdan mabû û aqibet jî di pîlanek darêtî û necamêrane li 30'ê Cozerdana 1309 (1930)'ê de ji aliyê serleşkirekî dewleta Îranê ve bi navê gotûbêjê li bajarê Şinoyê de hat terorkirin û dawî bi şoreşa wî hat.

Lê ji wê jî xembar û dilêştir jî ev e ku gelek kesan hewil dane kesatiya wî rêberê kurd bişkînin û bi binpêkirina hemû pirensîpên exlaqî xwastine bi bîr û hizrên xwe yên şovenîstî, serhildana Simko berevaj û bi armanca tolhildanê nîşan bidin û tevgera wî jî bi eşîretî û herêmî bihesibînin. Herweha bi binavkirina wî weke diz, talançî, îxanetkar û ..., xwastine kincên mirovahiyê ji cesteyê wî derbînin û wêneyek xirab û nebaş jê bineqşînin. Eva jî siroştê dagîrker û neyarên kurdan e ku dixwazin rêberên me bêqedr û qîmet bikin û dîrokê li gorî xwe bixemlînin. Rast e ku Simko tu car kerb, kîn û hesta tolhildanê li derûna xwe de bi nisbet dewleta Îranê neveşartibû, herweha renge tûşî hin şaşiyan jî bibe, lê şoreşa wî tam siyasî, netewî û modern bû. Belge, name, kar û çalakiyên wî, herweha çavkaniyên bêalî yên mewcûd jî bi başî vê yekê diselimînin.

Di 80'mîn salvegera şehîdkirina wî de silavên emegnasî û wefadariyê bo ruha pak ya wî û hemû şehîdên riya rizgariya kurdistanê dişînim û bejna xwe li hember cangorîtî û qehremanetiya wan lehengan de kirnoj dikim û dibêjim dîroka pirr ji şanaziya ku we afirand, we jî ji bîr nake.

## RONÎ

### Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdulla Hicab**

# Hezar Gotin Nabin Yek Kirin

Biryara hejmar 1929 ya Konseya Ewlekariya Rêkxistina Neteweyên Yekgirtî ku roja 09.06.2010 bi 12 deng ji 15 dengên endamên rêkxistinê hate pejirandin û hinek xeleka dorpêçên abûrî li ser Îranê şidand, dijkiryarên cuda hebûn. Di demekê de ku welatên xwediyê pêşniyarbiryarê, ev pêgav weke serketinek dîplomatîk û nîşaneya hevdengiya cîhanî li hember zêdegaviyên Îranê nîşan dan, birêveberên Komara Îslamî bi keys û laqirdiyan pêşwazî ji biryarê kirin. Ji bo Ehmedînijad û hevbîr û piştgirên wî, ev biryar jî tenê axaftinek nû ya bêçine ya grûpa 5 + 1 (DYA, Federasiyona Rûsiye, Çîn, Feranse, Şanişîna Hevgirtî + Alman) bû ku wê tu karîgerî li ser Îranê tune be.

Dema mirov temaşey dan û standinên wan 30 salên dawiye Civaka Navneteweyî bi Îranê re dike, renge ji aliyekê ve maf bide rêberên rêjîmê ku ji ber biryara nû ya KENY qey ber xwe nekevin. Ji ber ku heya niha her li ser doza projeya Etomiye Îranê, Konseya Ewlekariyê 3 biryarên dorpêç kirina Îranê dane û tu ji wan biryaran nekariye bêhna rêjîmê çik bikin. Beriya wan 3 biryaran jî DYA bi salan qaşo Îran dorpêç kiribû, lê bikiryar tu gav pêwendiyên xwe yên bazirganî bi Îranê re qut nekir.

Abûriya Îranê li ser bingeha firotina nevtê hatiye ava kirin ku ji salên 1950 û pêve her tim berîka karbidestên welat pir dike û destên wan ji bo pêşvebirina her pilan û pirojeya ku bi xwe bixwazin, vekirî hîştiye. Ev beşa bazirganiyê xêra herî mezin dide şirketên petrolê yên DYA. Şirîkên sereke yên bazirganiya Îranê heya hilweşîna rêjîma Paşatiyê di sala 1979 de Amerîka û welatên Rojava bûn, lê ji wê demê û pêve, rêjîma nû berê xwe da Rojhelat û welatên nûvegeşiyaî yên Asia. Dorpêçên ku di serî de Amerîkayê xistin ser Îranê, ev pêvajo hê bi hêztir kir.

Bi nav dorpêçkirina Amerîkayê, di heman demê de rê ji bo bazirganiya bi dizî bi Îranê re vekir. Ne tenê beşa pîşesaziya sivîl û bazirganî, lê pîşesaziya çekên Amerîkayî jî riyên nû ji bo bazara Îranê peyda kirin. Çekên Amerîkaiye Îranê weke balafirên şer yên F4, F5, F 14, C 130 û hwd tu gav ji ber kêmiya emrazan, ku pêwîst bû ji Amerîkayê bên an bi riya hevpeymanek Amerîkayê re bigehin Îranê ji kar neketin.

Di salên navbera 1980-88 de, şerê bi Îraqê re karîgerî li ser hemû warên jiyana abûriye Îranê hebû. Di wan salan de hemû pareyê ku ji riya firotina nevtê ve dikete destê karbidestan ji bo kirîna çekan dihate bikaranîn. Rûsiye, Çîn, Koreya Bakûr û welatên din yên hevpeymanê Yêkîtiya Sovyeta pêşîn bûne şirîkên nû yên Îranê. Lê bi dawî hatina şer li sala 1988 û pilana abûrî ya ku Refsencanî di destpêka salên 1990 de bingeha wê danî, pêşveçûna abûriya Îranê ku ji sala 1979 ve di rojevê de nemabû dubare vejiya.

Refsencanî zêde giringî da sermayeya bîhanî û sermayeya Îraniyên ku li derveyî welat dijiyan, lê derfetên wan yên abûrî hebûn ku sermayeya xwe vegerînin welat û di beşa pîşesazî û ticaretê de bixin kar.




Dema zemîneya vegera sermayeyan amade bû, DYA biryar da ku pêşiya razandina sermayeya Amerîka li Îranê bigre, lewma di sala 1995 de Kongreya Amerîka biryar da ku tu sermayeya Amerîka derbasî Îranê nebe. Biryarê bi tenê pêşiya çûna sermayeya Amerîka bo Îranê girt, lê nekarî pêşiya bazirganiya şirketên Amerîkayî bi Îranê re bigre.

Li gor agahiyên ECONEWS'ê, Îran di sala 2010'an, de bi 50 welatên cîhanê re pêwendiyên berçave yên abûrî û bazirganî hene ku hema hema hemû welatên grûpa 5 – 1, piraniya welatên Ewrûpayî û Japon di nava wan welatan de ne. Her weha Imaretên Yekgirtî yên Erebî, Koreya Başûr, Turkiye, Hindistan û Swîs ku dost û di gelek waran de hevpeymanên Amerîkayê ne di nava wan welatan de ne. Xêncî ji wan welatan, Koreya Bakûr, welatên Sovyeta berê, Îraq, Sûriye, Pakistan, Efxanistan, welatên Amerîka Başûr û hin welatên Afrîqayî bi Îranê re bazerganiyek xurt hene.

Nayê zanîn ku tu ji wan welatan, şirketên Amerîkayî jî di nav de, amade bin ku berjewendiyên xwe yên ticarî bikin qurbaniyê siyasetekê ku cidîbûn û karîgeriya wê li ser guherîna dan û standinên Komara Îslamî bi cîhana derve re ne diyare. Lê îmkan heye ku ji wan pêwendiyan hê zêdetir hin deriyên bazirganiya qaçax jî bi Îranê re vekin. Ev yek jî derfetek zêrîn dide karbidestên Komara Îslamî ku hê zêdetir zextê bidin tevgera guhertinxwaze navxweyî û zexta li ser gelên Îranê hê zêde bikin.

Her çend dorpêçkirinên nû biryare pîşesaziya çekan, pirojeyên Sipaha Pasdaran û rabûn û rûniştin û bizavên kesayetiyên girêdayî bi Sipaha Pasdaran û tora terorê ya Komara Îslamî di herêm û cîhanê de ji xwe re hedef bigre, lê hê carê nexuya ye ka ev dorpêç kirin ji yên heya niha serketîtir be. Îro dirav, pîşesazî, bazirganî, çek û hemû dezgehên deselatê di destê Sipaha Pasdaran û hêzên besîc de ne. Dema dorpêçkirinên nû bi awayek cidî bikeve rojevê û qaşo karîgerî jî hebe, wê bi tenê rewşa jiyana xelkê sivîl nexweştir bike.

Biryara 1929 di gel ku hem bi naveroka xwe û hem jî bi zimanê xwe ji her 3 biryarên beriya xwe cudatir e, lê Îranê gelek deriyên cuda di bazirganiya cîhanî de vekirine ku renge jêre alîkar be heya bikare karîgeriya vê biryarê jî kêm bike. Lewma karbidestên rêjîmê weha bê minet biryara nû bê mana didin nîşandan.

Gotinek berê heye dibêje, hezar gotin nabin kirinek. 30 sal in DYA û hevpeymanên wê yê nêzîk basî dorpêçkirina abûriye Îranê dikin, lê bi kiryar heya niha bi qasî pûşekê zext nexistine ser Îranê. Li ber çava ye ku bi sedan karbidestên herî bilind yên Sipaha Pasdaran û sîxurên Komara Îslamî bi navê lêkoler, diplomat û... di zankoyên Amerîka de perwerde dîtine û niha di dezgehên birêveberiya Îranê de kar dikin.

Komara Îslamî wê tenê demekê bikeve bin zextê û xwe neçar bibîne guhdariya şîret û biryarên navneteweyî bike, dema ku di asta cîhanî de bi yekdengî û bi cidiyetek pitir pê re dan û standin bê kirin. Riya herî karîger ji bo guherîna reftara Komara Îslamî ev e ku alîkarî bê kirin ku gelên Îranê ji destê vê rêjîmê xelas bibin û sîstemek demokratîk bikin cîgirê teokrasiya deselatdar. Ji bo wê yekê pêgava herî giring, ewe ku deriyên navend û dezgehên navneteweyî ji opozisyona Îranê re bên vekirin heya ku hawara gelên Îranê bigehînin hemû cîhanê.

# Rê Û Resma 30' mîn Salvegera Avabûna Radyo Dengê Kurdistana Îranê Hat Lidarxistin

Roja 17'ê Hezîrana 2010'an, li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ, bi amadebûna Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê partiyê û endamên Deftera Siyasî û komek ji endamên Komîteya Navendî û kadro û pêşmerge û malbatên wan û herwiha rêveberên Radyo Dengê



Kurdistana Îranê, di rê û resmekî berfireh de, 30' mîn salvegera avabûna vê radyoyê bilind hat nirxandin û rêz ji xebat û tekoşîna bêwestiyan a rêveberên vê hat girtin.

Destpêka vê rê û resmê bi Bilûla Qalemere, marşa Radyoyê û xwendina sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqije şehîdên rêya rizgariya Kurdistanê dest pêkir.

Piştre Mistefa Hicrî bi vê hilkevtê axaftinek pêşkêş kirin.

Hicrî di axaftina xwe de, hawriyek ji dîroka pir ji serwerî û destkevt a Radyo Dengê Kurdistana Îranê da û ew bi yek ji dezgehên herî girîng ên ragihandinê li qonaxên cuda wesifand. Hicrî herwiha da zanîn, Dengê Kurdistana Îranê karî rastiyên civakê weke xwe bi guhê xelkê bigehîne, renge piştî Komara Kurdistanê ku radyoyekî mehelî û kêmhêz bû û nûçeyên wê demê ên Mehabadê û derdora wê belav dikir, Radyo Dengê Kurdistanê yekem ragihandina giştî a Kurd bû ku bi awayekî baştir karî dengê rasteqîne a xebatkaran û tekoşerên kurd bi guhê xelkê Kurd û netewên din bigehîne, lewra di dema ku wê radyoyê dest bi karên xwe kir bûye çavkaniya nûçeyên rast, hemû aliyên din û heta ji binke û navendên desthilata Komara Îslamî bo haydarbûn ji nûçeyên rastiya bûyerên deverê û şer û berxwedana pêşmergan tevî hêzên tepeserkerên Komara Îslamî, guh ji Dengê Kurdistana Îranê digirtin, ji ber ku Radyo Dengê Kurdistana Îranê rastiyên bûyeran bi bê Weşartin radigehand.

Mistefa Hicrî di beşeke din a axaftina xwe de îşare bi rola radyo û bandorên wê kir û di heman demê de rêz û qedirsaniya PDKÎ bo hemû wan têkoşerên ku di derbasbûyî heta niha di vê radyoyê de kar kirine, dubare kir û bi taybetî rola rêberê jêhatî ê gelê me, Dr. Qasimlû bilind nirxand.

Piştre peyama komîsyona Radyoyê ji aliyê Luqman Mêhfer, endamê Komîteya Nawendî û berpirsê vê komîsyonê ve hat pêşkêşkirin ku di vê peyamê de bi hûrî îşare bi giranî û pêgeha taybetî a Radyoyê kir û bi yek ji dengê rasteqîne û rasbêjî û cihê baweriya xelkê Kurdistanê û Şoreşa Kurd wesifand. Di beşeke din a vê peyamê de, Mêhfer îşare bi wê rewş û zirûfa ku radyo têde ji dayîk bi bû, kir.

Piştre di çend beşên cuda cuda de bi vê hilkevtê peyama pîrozbahiya Yekîtiyên Jinan, Ciwanan, Xwendekaran, Komîsyona Çapemenî û herwiha Yekîtiya Pîşeyî a Mamostayên Kurdistana Îranê û Yekîtiya Zanayên Olî ên Kurdistana Îranê hatin pêşkêşkirin û piştre tabloyek û lewhekî rêzlênan ji aliyê Yekîtiya Ciwanan û herwiha tabloyek ji aliyê malbata şehîd Ebdurehman Lahîcanî ve pêşkêş bi komîsyona Radyoyê hat kirin.

Dûre pexşanek ji aliyê Keyhan Yûsifî ve hat xwendin. Herwiha bi nûneratiya Deftera Siyasî a partiyê ve ji xelata rêzlênan bo Komîsyona Radyoyê ji aliyê Mistefa Hêcrî ve pêşkêşî kek Luqman Mehfer û herwiha çar kadroyên kevnar ên vê komîsyonê bi navên: Muhendîs Riza Xeyatî, Nûredîn Sofîzade, Siyamend Terbî û Resûl Qorxî hatin pêşkêşkirin.

Hêjayî gotinê ye, dawiya vê rê û resmê bi şahî û dîlana beşdarbûyan bi dawî hat.

# Sî Sal Xebat Û Tekoşîna Bêrawestan



**Şehab Xalidî**

Buhara sala 1359 (1980)'an Buharek cudatir ji her buhareke din bû, helbet cudahî bi wateya xwe a siyasî. Belê serbarê vê yekê ku li kurdistanê de şerekî bê navber berdewam dikir, û dengê belengaziya kurdan ji sînorê Kurdistana Rojhilat jî derbas nedibû, lê vê carê jî wek hemû carê bîr û hizra tûj û berfireh a şehîdê nemir Dr. Qasimlo bi hewara Kurdan de hat û gelê Kurd ji vê astengiyê derbasî qonaxeke din a xebat û tekoşîna ji bo rizgariya netewî kir. Belê li roja 27'ê Cozerdana sala 1359'an de, Dr. Qasimlo bi peyama xwe a pirr wate, damezrandina Radyo Dengê Kurdistana Îranê ragihand. Damezrandina vê dezgehê di vê serdemê pirr aloz de, wek derketina tîrêjên rojê li esmanê pirr ji bêdadiya Kurdistanê de bû, ku karî bala her kesî bo aliyê xwe rakêşe, ji cotkaran ve bigre heya mamostayan, ji kedkaran ve bigre heya xwendekaran û gişt tex û qatên welat. Ew biryar di wî serdemî de biryareke gellek bi cî û di hemen demê de nîşaneya zanayî û hişyariya bê qas ya Dr.Qasimlo, û hestkirina bi hebûna valatiyekê li tevgera rizgarîxwaziya xelkê Kurdistanê de bû.

Hekî li drêjahiya dîrokê de, yekem car di sala 1918'an de bû ku nûçeya bidawîhatina şerekî cîhanî ji rêya radyoyê ve dihate bilavkirin, li Kurdistanê de jî yekemîn car bû ku mizgîniya bidawîhatina vê hemû bêdengiya ku li derheq kuştina Kurdan de hebû, ji rêya Radyo Dengê Kurdistana Îranê ve dihate dan. Hekî wê demê ragihandinên xwedîhêz ên propagendeyî ên dewleta Îranê hemû rojê bi nûçeyên pirr ji direv û nerast derheq xelkê Kurdistanê bilav dikirin, û gelê Kurd jî wek kafir dihesêbandin û biryara xeza (cîhad)ê bi dijî gelê Kurd bi rewa dizanîn, lê li hember de gelê Kurdistanê, eşkerekirina vir û direvên wan dem û dezgehên propagendeyî ên rejîma Îranê kire serhêla çalakiyên xwe ên herî girîng, ku li encamê de bû yek ji wan kême radyoyên cihê baweriya xelkê Kurdistanê.

Xala herî balkêş û giring ew e ku serbarê rewşa nebaş a abûrî û îmkanatên kêm û destpêrenegihîştina bi şarezayên pitir di ware karê ragihandinê de, hertim radyo li jêr agirê top û xompareyên rejîma Îranê de bûye, lê dîsan bi bê rawestan serbarê gişt kêmasiyan karê xwe domandiye û bûye kelema çave dijminan û bûye cihê hêviyê bo xelkê Kurdistanê.

RDKÎ heya niha nêzî 20 carî cihê xwe bi sebebên curbicur guherî ye, û di vî heyamî de carna bi nûçeyên xweş ên weke serkevtina pêşmergeyan li eniyên şer de ken û sema xistiya ser lêvên dayîkan, û li ser lêvên şeq-şeqbûyî ê zarokên sêvî û hejar. Lê carna jî bi nûçeyên xwe ên dilêş, wek nûçeya şehîdkirina Dr.Qasimlo û Dr.Şerefkendî xem û keser û girî dikire mêhvanê xelkê Kurdistanê.

Vê demê bû ku di nav dumana bêdadaiyê de, bilura Qalemere û siruda Ey Reqîb morala herî xwedîhêz didane gelê xwe û rihê berxwedaniyê di nav cesteyê wan de diafirandin. Ew moral û ew rihê berxwedaniyê sînor jî derbaskiribûn, û pênûs û ziman ji pesna vê aciz mabûn. Belê vî dengî bi hezaran bîranînên tal û şirîn di mêjiyê her takekî Kurd de afirandin.

RDKÎ bi hezaran bîranînên tal û şirîn di mejiyê her takekî Kurd de afirand. Ew deng ji bo malbatên şehîdan jî ne tenê bi hezaran bîranînî afirandin, belk' ji bo wan sedan wate hebûn. Wateya emegdarî, domandina rêya şehîdan û hêvîdarkirina wan bi rojên geş û xweş ên azadî û serbestiyê.

Ez bawerim ew roj dê bihêt ku em mizgîniya bi davîhatina temenê pirr ji cinayet ê deshilatariya Îranê, û damezrandina sîstimeke gelî û demokratîk, ji vê çepera berxwedaniyê, anku ji RDKÎ'ê ve guhdarî bikin.

# Di Roja Cîhanî A Penaberan De Awirek Ji Rewşa Penaberên Kurd



Ceifer Mubeşirniya

Di dema peydabûna bi dû hev ya hoz, qewm, gund, bajar, herweha dewlet û netewan, qonax bi qonax, her yek di dema xwe û bi sedemên cuda diyardeya penaberî hebûye û niha bûye bi diyardeyek cîhanî. Ewa ku berê di Kurdewarî de bi xerîb yan xerîbe hetine naskirin, herweha di nav netewên din de jî xerîbe hatine xwedîkirin û piştevanî jê hatine kirin. Lê bi dirêjiya dîrokê û pêşkevtinên mirovahiyê, û parastina berjewendiyên pêkhateyî û netewî, hin ji netewe û pêkhate negihîştin mafên siroştî ên xwe û bi awayekê mafên siyasî, çandî, aborî û civakî ji wan hatin zevtkirin û ewlehiya jiyana wan kete metirsiyê. Lewma diyardeya penaberî yan koçberiya bi tak û bi kom ji civakê bo cihek din pir zêdebû û bûye berçawiyek cîhanî.

Di encama kar û xebatên civaka cîhanî de ji bo wê pirsê di asta navnetewî de saziyek bi navê Komîsaryaya Bilind a Penaberan, ji bo berevanîkirin ji mafên wan pêk hat. Ew Kumîsarya xwediyê hin pênase û yasayên taybet bi penaberan e û li gor wan yasayan banga civaka cîhanî dike ji bo rêzgirtin ji wan rênimayiyan.

Xala sereke ya wê saziyê ji bo pênaseya penaberan ev e: Penaber kesek e ku di peywendî li gel pirsên netewî, nijadî, mesebî, bawerên siyasî û endambûn di hin ji giropên civakî de ewlehî, tenahî û jiyana wan bikeve metirsiyê de. Herweha ew penabir li her welatekê ku bizanin ew metirsî li ser wan kêm dibe, erkê wan welatan e ku li gor yasayên navnetewî ew maf bi wan bihên dan.

Li gor rapora Komîsaryaya bilind a penaberan pêtî 42 milyon kes di cîhanê de penaber in ku 2 ji 3 a wan di bin givaşên desthilatdarên welatên xwe de bi neçarî ji mal û halên xwe hatine dûr xistin û her yek ji wan di welatên cur bi cur de cihgîr bûne, lê wek pêwîst ji aliyê wan welatan ve rêz ji penaberan nayê girtin.

Herweha îtiraf dike ku saziya Navnetewî di wî warî de xemsar e.

Diyardeya han gellek bas û şirove û analîzên cuda li bizavên cuda de hildigre, lê em dê xwe ji hûrdekariyan biparêzin û awirekê rewşa penaberên Kurd li Kurdistana Îranê de bidin û wan li gor yasayên Navnetewî û yasayên welatên din di warê penaberan de binirxinîn.

Wekî eyan û eşkere, gelê Kurd weke neteweyek mezin di vê Cîhanê de bûna wê heye, lê bi dirêjiya dîrokê bi giştî bindest û mafxwarî bûye û di 30 salên derbazbûyî de jî bi awayek taybetî givaşên giştalî bi taybetî siyasî li ser Kurdan hatine meşandin û kurd bi awayên hovane ketine ber pêlên siyaseta reş a Komara Îslamî. Ew rewşa nebaş ya Kurdan li xeterketina tenahiya canî û malî ya wan bûye sebeb ku hejmarek zaf ji wan bo nefeskêşanek azad û demkî jî be, ji zêd û nîştimana xwe dûr ketine.



Penaberên Kurd jî yek ji wan pêkhate û qatên civaka Kurdî ne ku tirajîdyayên wiha derbas kirine ku dûrin ji jiyan û rewşa îroyîn a cîhanê, derdikeve ku di penaberiyê de jî mafxwarî ne.

Belavbûna penaberên Kurd ên Îranî li Îraqê ji bo ku bigîjin meqsedên xwe anko welatên sêyem, rewşa wan ya xerab û bendewar û bê bersivhiştina wan bi çendîn salan bi bê rênimayiyên saziyên navnetewî ên peywendîdar bi wê meselê, hewilnedan ji bo derbazkirin bo welatên sêyem û ne jî hebûna mafê hevwelatiyê û birêvebirina pêvajoya jiyanê û hin pirsgirêkên din ên di warê pirsên siyasî de mafên penaberiyê ji wan hatiye zevtkirin. Ji aliyek din û di welatek din ên ku penaberên Kurd rû lêkirine, welatê Turkiye ye ku rewşek pir xerabtir heye weke, lênepirsîn û pêşnegirtin ji riftarên nebaş ên polîsên Turkiye, nebûna îzna karkirinê ji bo xwe jiyandinê, pirsa siyasî û netewî ku hertim weke nerîtek zatî ji tirkên faşîst re pirsa sereke bûye û bersivnedana organên UN ê, kêşe û arîşeyek micid ji wan re pêkaniye ku heya niha bi dehan car girevên birçîbûnê û heta xwekujiyê li nava wan de rû daye, xêncî nebûna derfeta xwandin û perwerdeya ji zarokên wan re.

Li cihek din bi awayek taybetî ez pirsa hejmarek din ya penaberên Kurd bînim ziman, ew jî ew penaberin ku berî çend salan li kempek nizîk Romadiye ya Kurdistana Îraqê birêketin û li ser sînorên Îraq û Urdonê hatine ragirtin û bi bê kêmtirîn îmkanatên jiyanê û windabûn ji çavên aliyên peywendîdar ku birastî baskirin li ser rewşa wan dilê her miroveke biwijdan dihejîne, jiyanê diqedînin. Piştî êrîşa Amerîkayê bo ser Îraqê ew derbazî wan sînoran bûn û welatê Urdunê ne mafê penaberiyê ji wan re pejirand û ne jî îzna derbazbûn li sînorên wî welatî re da. Bi her awayekê be hejmarek ji wan derbazî welatên Ewropayî bûn û ewên din jî her wisa di wê rewşa nexweş û xeraba jiyanê de mane. Piraniya wan penaberan jin û zarokin û hejmarek ji wan jî jin û mêrên bi temen in ku seba nebûna xorek û ewlehiya jiyanê tûşî nesaxiyên cur bi cur bûne û di wî halî de jî tu îmkanateke dermanî û tendirostiyê di îxtiyara wan de nine, ew di xîwetan de dijîn û îzna kar û kasibiyê ji wan re tune ye Bi kurtî her deriyek ji bo xwe jiyandinê li ser wan daxistî ye.

Ew rewşe di demekê de ye ku Cîhan pir ji yasa û pênaseyên wan yasayan ku di alema xwe de beheştek berîn ji mirovan re pêkaniye. Yek ji wan yasayan ku di Cîhana Îslamî de pir bandor e, daxuyaniya mafên mirov ên Îslamî ya Misrê ye ku têde hatiye, "li gor bawer û buhayên Îslamî, her mezlûmek ku xwazyarê hevkarî û penaberiyê be, erkê her takekê misilman û bi taybetî dewletên Îslamî ye ku jêre hevkariyê bikin û mafê penaberiyê bidnê, lê cuda li wê yekê ku welatên Îslamî çi hevkarî nekirine, belkî sebebên eslî ên penaberî û di wê derê de jî bêmafkirina penaberên Kurd bûne.

Ji aliyek din ve jî ew yasayên navnetewî û saziyên li gor wan yasayan hatine damezrandin û bi navên cur bi cur pêdagirî li ser mafên mirovan, bi awayekê di bin bandora rewşa siyasî a welatên superhêz de kar dikin.

Weke xuya, ew sazî pêtir karê organîk ên xwe birêve dibin, lewma gelek caran li hin welatan saziya UN ê çalak e û li hin welatan jî bo heyamên dirêj karê xwe disekinînin bi bê li berçavgirtina rewşa penaberan.

Lewma ji bo penaberan ew dimîne ka kengê berjewendiya wan dê bi berjewendiya desthilatdarên Cîhanê re bizeliqe û bi cih hatina hin ji armancên wan di bi cihhatina tev armancên zilhêzan de be.

# DOSTANÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Hingof û tewatên (şaşî û fehşiyên) bêsînor û hewldan û xebatên bêbinyat, bi saya hizirîna diyalektîk li bertek û lebatên rasteqîn dadigerin.

Formûlasyonên zanistî yên diyalektîk, tenê perdeyên reş û tarî yên ku li ber çavên mirov hatine danîn nade alî; her wiha toz, talaz û xubara ku bi hezaran sal bi ser hiş û hişmendiya mirovahiyê de hatiye reşandin jî dimale.

Ramana zansitî, rasteqîna hebûn û xwezayê eşkere dike. Û bi hemû aşkîşa xwe rastî û rastîniya jiyanê li ber çavan radixe.

Têkiliyên xayedar û manîdar li ser riknê ferasetên mirovî û aştiyane aj didin û geş dibin. Ferasetên aştiyane, jî bi avakirina dostaniyên hîmdar û bergehdar manîdar dibin û digihîjin mebsta xwe.

Her heyîn û kirû bi pozberê xwe re diwelide, dîjî û diguhere. Dostanî jî yek ji van kirûyên civakî û komelayetiyê ye ku bi dijminahiyê re derketiye holê û li kirûyeke girîng watedar dageriyaye. Her çendî ku di vê babetê de em ê pesn û wesfê dostaniyê bidin jî divê em hinekî têkilî dijminahiyê jî bibin. Lewre, gava ku têgihek tê ravekirin, divê dijber û dijwateya wê wê jî were qalê û pête nasandin ku wateya wê ya rastîn bê dayin û fêmkirin. Ango em ê qet pesnê dijmnahiyê nedin û heta ji me bê, em ê rastiya wê li ber çavan raxin. Belê ya rastirîn, pêşî em ê herdu têgînan rave bikin û peyre jî rikberî û lêknekeriya wan rûberî hev bikin.

Dostanî; ji hest û dilîniyên hûrbîn, ji mebest û faresetên pejnkar, ji pêwendiyên jidil û bidil pêk tê û geş dibe. Belê dijminayî jî, ji dîlîtiyên bindest, ji zext û ferzîneyên zordest û ji têkiliyên sermest û berjewendperest pêk tê û şêwe digire. Dostanî ji rengînî û hevahengiyên xwezayê dinime. Belê dijiminahî ji pevçûn û lêkdanên bêwext û bêbext dinisile. Dostanî; çeqa hest û bestên pak e. Belê dijminayî, feqa kerb û kînên tirsnak e. Dostanî, xweşbîniya jiyanê ye. Belê dijminayî, reşbîniya cîhanê ye.

Dostanî, pêwendiyeke siruştî ya qedîm, nemir û mayinde ye. Dijminayî, çêkirî, demdemî, guherbar û bêteşe ye. Dostanî, şahî û dilşahiya takekes, aramî û giramiya civakê ye. Dostanî, pêşbînî û xweşbîniya dahatûya jiyanê ye. Dijminayî, kîn û reşbîniya raboriya mirovahiya cîhanê ye. Dostanî, hezkirin û azweriya azadiyê ye. Dijminahî, jêvereşîna şer û şerûdiyê ye. Dostanî, ewleyiya aştî û aramiyê ye. Dijminayî, kana kerb û xerabiyê ye. Dostanî misogeriya yeksanî û azadiyê ye. Dijminayî, riknê fitneyî û fesadiyê ye. Dostanî, rêzdariya peyrewên mirovahiyê, dijminayî, bingeha dilmayin û hesûdiyê ye. Dostanî, mehweya çêj û kêfxweşiyê, dijminahî mehsera xezeb û kezebreşiyê ye. Dostanî, avhewaya şad û şadimaniya bextewariyê, dijminayî, jan û jandariya bêbextiyê ye. Dostanî, ken û bişirîna takekes; dijminayî, girîn û ingirîna civakê ye. Dostanî, hez û besimîna mirov, dijminayî, merez û mirûzdariya mirovahiyê ye… Bi kinayî dostanî, ahengdarî;. dijminayî, stembarî ye.

Hîmê dostaniyê, yeksanî ye. Di têkiliyên yeksan de parastina berjewendiyên ezperest û xweperest ne pêkan e. Pêwendiyên dostaniyê yên jidil û can hemû li ser vî hîmî têne domandin. Dostaniya rastîn, qet rê nade bêheqî û bêbextiyê. Dostaniya rastîn, destûr nade xwekuştin, hevkuştin û komkuştinên civakî. Dostaniya rastîn, rê nade alozî û tevlîheviyên komelî. Dostanî, destgirtin û hevgirtin e. Dostanî, hezkirin, rêzgirtin û giramî ye. Dostanî, jihevezkirin û jixwehezkirina mirovî ye. Dostanî, berpirsiyarî û peywirdariya lihevhatina civakî ye. Dostanî, astengkirin û rêlibergirtina hemû cureyên dijminahiyê ye. Dostanî, afirandin avakirin, lêkirin û çêkirin e. Dostanî, panzehîra fesadî, paşgotin, dexesî û pexiliyê ye. Dostanî, rûxandina text û paytextên stembariyê ye. Dostanî hilweşandina pergalên zordestî û desthilatdariyê ye. Dostanî xweşikbûn, bedewbûn û pevşabûn e. Dostanî azadbûn, şarezabûn û mirovbûn e.

Dijminayî, nûnertiya xedarî, serhişkî û dilhişkiyê yê. Dijminayî, navgîna rûreşî, bextreşî û zikreşiyê ye. Dijminayî, nexweşiyê, ebareta xurifîn û bêhişiyê ye. Dijminayî, şan û hêmaya rûreşiyê ye. Dijminayî, banga bêbextî û qaleşiyê ye. Dijminayî, berbanga bextreşiyê ye. Dijminayî, heyf û tola kevneperestiya raboriyê ye. Dijminayî, kujera nûjeniya diwaroja komelayetiyê ye. Dijminayî, dost û yarê mirovkujiyê, dijmin û neyarê mirovheziyê ye.Dijminayî rûxandin, xerakirin û wêrankirin e. Dijminayî mandelekirin, astengkirn û tunekirin e. Dijminayî fitnebazî, şerxwazî û darazî ye. Dijminayî xwekijî, hevkujî û komkujî ye. Dijminayî şikdarî, sawdarî û tundwarî ye. Dijminayî xwînsarî, xemsarî, sersarî ye. Dijminayî, jan, azar û bêzarî ye.

Bêwefatiya mirovatiyê ya herî bêsûd û bêsiûd, parastina dijminahiyê ye. Dijminahiya ku di her dem û domanên dîrokî de derfet û eman nedaye dostaniya rastîn. Şer û pevçûnên dîrokî yên bêdeman her gav tov û bizrên kerb û kînê reşandine ser erdzemînên dinê. Kîndariyên kerbdar û rikindar tu car xwe ji pêxêla mirovahiyê bernedaye. Ji ber wê ye ku di tu deman de mirov û mirovahî bê dijmin û neyar, bê şer û pevçûn nemaye.

Dostanî û dijminayî, wekî ku li jorê jî hate diyarkirin, du kirûyên dijber û rikber ên gerdûnî ne. Herdu têgin jî hebûna xwe ya dijber, her gav li nik hev, digel hev û li ber hev dikudînin. Hebûna yekê girêdayî tunebûna ya din e. Ji bo ku kerb û kîna dijminayiyê ji holê raebe, divê hesret û hezkirina dostaniyê bi hemû azweriya xwe di dil û hinavên mirov de zîl bide û şax berde.

*Kaniya Helbestan*

## Diyarî gunehên xwe bike



**Şepal Hêvo**

Ew ê han, yê bejin şikestî
Dema şev bi ser de dikeve
Mestbûn.. polî poşman, min şiyar dike
Radibim...
Neqûşkekê ji wêneya xweyî çilmisî
didim
Û ji ba re, na ne ji ba re
Pêre nimêja tenêtiyê dikim
Û fatîheyekê ji sêwlekan re digurînim
.
Li bîra min e
Ku av ji neçarî diherike
Û kufriyên dîl, li mafê xwe digerin.
Hê jî tiliyên min
Tama pênûsê nekirine,
Carna weke zarokekî
Xwe şêrîn dikin
Û carna, mîna qehbekê
Min dixapînin,
Lê ji wan pir hez dikim.
Awrên te..
Mîna mirîşkên malê,
Nikila li dilê min didin.
weke pelê çixareyên qaçax
Zû dişewitim,
Û di xwelîdanka helbestvanekî kor
de,
Bînberdana teyî şermok, min birînpêç
dike.
Ji kîjan dergehî xwe vekim?
Ta ji hilma gazinên teyî bêser û ber
riha bibim.
Erê...
Yên ku li ser qeşayê tembîniyên xwe
dinvîsînin
Dayîka wan dayîka min e,
Yên pîxwas, dema li ber dîwarê
helbestê,
Mîxên azdaiyê dikutin,
Ew deşt jiyana xwe ji dest dide.
Ew ê han, dema peyalekê ji giriyê min
dinoşe
Agir bi konê gotinan dikeve
Mala hevokê xira dibe
û tu li min napirsî.

**Avestakurd**

# Zimanê Me Nasnameya Me Ye

Beşa 1



Mecîd Cinîkanlo

Zimanê Kurdî yek ji sembolên herî xurt û li rastî de hêma û faktera hebûna neteweya me ye. Ziman wek nasnameya mirovan tê hesêbandin û mirovên ku bi zimanê xwe axaftinê nekin, ev mirovên bê nasname tên hesibandin. Neteweya Kurd serbarê asîmîlasîyona bilez ya dujminên me bi hemû awayekê ji zimanê xwe berevanî kiriye û dayk û bavên Kurd bi rihekî kurdewarî zarokên xwe bi zimanê Kurdî perwerde kirine. Yek ji pîvanên sereke yên netewebûnê, zimanê vê netewê ye. Ziman nîşaneya hebûna neteweyekê tê hesibandin, lewra Saziya Neteweyên Yekbûyî, roja 21ê February, wek roja cîhaniya zimanê dayîkê bi nav kiriye. Di vê rojê de NY bi birêvebirina civîn û rê û resman, li gellek ji welatên cîhanê, rêz ji zimanê dayîkê yê neteweyên curbicur digre û daxwazê ji welatên dinê dike ku mafê xwendin û nivîsandina bi zimanê dayîkê, ji bo kêm neteweyên akincî li welatê wan de, li berçav bihê girtin. NY herweha texmîn dike ku 40% ji zimanên cîhanê seba guhnedana rayedaran û herweha siyaseta asîmîlasîyonê ji nav herin, û bi vî awayî mirovatî yek ji girîngtirîn amrazê têgihîştinê, yanî nasnameya tev mirovatiyê ji dest bidin.

Neteweya Kurd wek yek ji neteweyên herî kevnar li Rojhilata Navîn, tê naskirin û zimanê Kurdî pêka praniya çavkaniyên li berdest de, yek ji zimanên herî kevnar ên cîhanê ye, ku mirovan bi vî zimanî axaftin kirine. Li gorî lêkolînên li berdest de zimanê Kurdî çiqek ji zimanê Hind û Ewropî ye ku li hinek ji cihên Rojhilata Navîn û bi taybetî li Kurdistanê bi vî zimanî, neteweyek 40 milyonî axaftinê dike. Zimanê Kurdî li 5 zarawayên, Kurmancî, Soranî, Hewramî, Zazakî û Lorî pêk tê. Piraniya zana û vekoleran li ser vê baweriyê ne ku zimanê Kurdî li rastî de her zimanê qewmê madan e, û seba derbazbûna dem, hinek guherîn li vî zimanî de pêk hatine. Profosor N.Mekinzî û Wiladimîr Mînoroskî di vê derheqê de dibêjin: Eger neteweya Kurd li paşmayiyên Madan nebin, gelo çi belayek hatiye serê neteweyek bihêz wek Madan ku li cîhana kevnar de, wisa bihêz bûne? û ev hemû Kurdên ku bi zimanekî Îranî, lê cuda ji hemû Îraniyan dipeyvin, li ku hatine?!

Herweha zana û rojhilatnasê navdar ê Elmanî li ser vê baweriyê ye ku eger rojekê lêkolînên micid li ser zimanê Kurdî bihên kirin, bê şik û guman zimanê Kurdî wek zimanekî herî kevnar dê bihête naskirin.

Eger em wek neteweya Kurd li dîroka xwe binêrin bo me eşkere dibe ku zimanê Kurdî li rastî de her zimanê Evêstaya Zerdeştê kal e. Nêzî 20 salî berî niha li herêma Hewramana rojhilatê Kurdistanê li îşkevtekî herî kevnar de, hin belgeyên dîrokî li ser Evêstayê hatin dîtin, ku piraniya wan belgeyan hin nivîsên Evêstayê bûn ku li ser çermê Ga hatibûn nivîsandin û piraniya wan bi zimanê Kurdî bûn. Lê mixabin ev belgeyên dîrokî ku parek mezin li pirsyarên dîrokzanan bersiv didan, ji aliyê desthilata Komara Îslamî a Îranê ve, hatin binçavkirin û mixabin heta îro rojê nekevtine ber destê zana û pisporên zimannasî û dîrokzanan. Lê ya ku îro û pêka belge û dukomentên dîrokî li ber dest dane, Evêsta pirtûka pîroz ya zerdeştiyan bi qasekî zor bi zimanê Kurdî hatiye nivîsandin.

Îro rojê û serbarê tekoşîna NY, Kurd wek neteweyek xwedî dîrok û zimanê taybet bi xwe, û xaka hevbeş, ji aliyê dagîrker ên xaka Kurdistanê bi hemû awayî tê tepeserkirin û hakimên dagîrkarên xaka Kurdistanê bi hemû awayekî li hewla jinavbirina neteweya Kurd in. Rejîmên dagîrkar ên Kurdistanê ji bilî siyaseta komkujiya Kurdan, bi siyaseta asîmîlasiyonê dixwazin ku neteweya Kurd ji nav bibin. Li Tirkiyê nêzî 80’ê salî, rejîma Kemalîst a Turkiyê axaftin bi zimanê Kurdî qedexe kir û neteweya Kurd bi hemû awayekê ji aliyê dezgeha ragehandina turkan ve dihat înkarkirin û axaftin bi zimanê Kurdî tawan dihat hesibandin. li başurê Kurdistanê zarawayê Kurmancî bi hemû awayekê dihat înkarkirin, û axaftina bi vî zarawayî tawanekî mezin bû, ku li jêr bandora rejîma Kemalîstan ev siyaseta qirêj dihat meşandin.

Li Kurdistana sûriyê Kurd ji hemû mafên mirovî hatine bêparkirin û ev siyaset heta îro rojê tê meşandin. Kurd li sûriyê serbarê vê yekê ku bê nasname ne, dîsan bi tu awayekê hebûna Kurdan nayê qebulkirin û zimanê Kurdî li bin gefên desthilatdarên sûriyê de tête înkarkirin.

Li rojhilatê Kurdistanê asîmîlasiyona ser zimanê Kurdî bi berdewamî dihat meşandin. Li rejîma Pehlewî de, Kurd wek parek ji neteweya Fars, û zimanê Kurdî jî wek devokek ji zimanê Farsî dihate hesibandin. Herweha rejîma han bi belgeyên nerast wek pirtûka Reşîd Yasemenî, Kurd wek parek ji neteweya Fars didan xuyakirin û li hin herêmên wek Xurasanê ku Kurd li wir dijîn, bi Kurdan re dihat gotin ku hûn Kurmanc in, û zimanê we Kurdî nine. Piştî têkçûna rejîma Pehlewî û hatine serkar a rejîma Xumeynî, serbarê cehd û xebata Kurdan, Kurd ketine ber siyastek herî xurt ya asîmîlasîyonê, û siyaseta bi fars kirina Kurdan ji aliyê dewleta melayan ve bi awayekî sîstimatîk tê meşandin.

Pêka siyaseta melayan, li rûyekî de neteweyên nîştecih li Îranê, hemû birayê yektir in û olê Îslamê hemûyan wek yek temaşe dike!! Lê di kiryar de newisa ye.

Her wek em li dîroka Afrîqayê binêrin, berî êrîşa Ereban bo ser Afrîqayê li welatên bakurê Afrîqayê, ziman û çandekî din hebûye ku bi erîşa Ereban ev çand bi tevahî asimîle bûye, û îro rojê ev wek Ereban tên hesibandin!!

Li rastî de siyaseta melayên deselatdar li Îranê wek siyaseta wan deshilatdarên Ereb ê ku dijberî serbestiya zimanan in, bi bandor bûye û sed heyf û mixabin hinek Kurdistanî bi zarokên xwe re bi zimanê Farsî axaftinê dikin. Ragehandin û medyaya Komara Îslamî a Îranê bi awayekî micid û li ser siyasetekî darêjayî dest bi weşana programan bi zimanê Farsî kirin û weha didin zanîn ku axaftina bi zimanê Kurdî nîşaneya paremayîn û axaftina bi zimanê Farsî nîşaneya pêşkevtinê ye. Ev siyaseta qirêj bi hemû awayekê û bi taybetî li debistan û zanîngehan de bi awayekî sîstimatîk tê meşandin.

# Belge fîlmek Spanî Li Ser Kurdên Sûriyê



Belgefîlmek Spanî “Un Pueblo Invisible” anku “miletekî ne xuya” rewşa penaberên Kurd vedibêje. Malbata Selahedîn Bilo, di sala 2006'an de ji bajarê Qamişlo reviyabû û berê xwe dabû Herêma Kurdistanê.

Malbata Selahedîn yek ji qurbanên serjimêriya awarte ya sala 1962’an e, ku bi deh hezaran malbatên Kurd li başûrê rojavayê Kurdistanê ji nasnameyên xwe hatin bêparkirin, ew li Sûriyê wek “Kurdên bênasname” tên naskirin.” Rojnamegerê Bask Karlos Zurutuza di nûçeyê de dibêje, “Me xwest bi riya vê belgefîlmê em ronahiyê bidin ser rewşa trajîk ya gelê Kurd yê ku di bin zordariya rejîma Şamê de dimîne”.

Derbarê xebata derhênerê belgefîlmê de, wiha hatiye gotin, “Derhênerê fîlm Karlos Zurutuza, gelek gotar û roportaj li ser Kurdên rojavayê Kurdistanê di media Spanî de weşadibû. Heman roportaj ji bo gelek zimanan hatibûn wergerandin: Holandî, Danîmarkî, Ingilîzî û Almanî. Karlos xwest xebata xwe ya nivîskî bi deng û wêne jî biweşîne, lê ji ber negengaziya kişandina fîlmekî li Suriyê li ser pirsa Kurdî, Karlos berê xwe dabû kampa Moqabilî ya li parêzgeha Duhokê, cihê ku penaberên Kurdên Sûriyê lê bi cih dibin.”

Hêjayî gotinê ye, belgefîlma her du rojnamegerên Bask, Borja Portuondo û Karlos Zurutuza, di meha gulana borî de li festîvala bi prestîj ya Belgefîlmên Mafên Mirovan Cinestrat li bajarê Valencia hatibû nîşandan. Belgefîlm bi Kurdî ye û 7 xulekan li ber xwe dide.

**AKnews**




**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**




## "Sedam" Navê Hespê Herî Giran Yê Xezeyê



Xwediyê Hespê herî baş û binirx yê Xezê, navê Hespê xwe daniye Sedam.

Li gor rapora "parsîne", "Meimon Xoznî" xwediyê wî Hespê binirx dibêje: Sedam nahê sekinandin. Tu hespek Erebî bi rewa wî re nagihîje, ew dînê bezê ye, ji ber şanazîkirin bi Sedam, piştî bidarvekirina wî, min navê Hespê xwe yê herî baş kire Sedam!

Hêjayê gotinê ye ku Serkomarê berê yê Îraqê (Sedam Husên), xwediyê rûmetek mezin di nava Filistîniyên akinciyê Xezê û bi Xasmanî endamên Hemasê de ye.

## Vegera Ser Ola Zerdeşt Li Îranê!!!



Di demên dawîn de hîmayên Zerdeştî yên wek milvan û wêne di nav gelek Îraniyan de bûye moda. Gelek kes wêne û milvanên Zerdeşt bi xwe re dikin û deq û gotinên Zerdeştî li rûpelên lênûs û rojnameyên xwe dininvîsînin û di axafitinên xwe de jî amaje bi gotinên Zerdeşt dikin.

Ev diyarde zêdetir di nav xwendevanên zanîngehê de berbilave, ku hinek ji wan hez dikin hêviyên xwe yên rastîn li ser vegera dînê bapîrên xwe naveşêrin.

Ew mirovên han li ser vê baverêne û dibêjin:

Hizra baş, gotinên baş û kiryarên baş, eger em vê gotinê bi cî bînîn, çi pêwîstiya me namîne ku em biçin nav hûrdekriyên ayînekî din. Em dikarin pêwendiyekî dirust û rastîn bi nûxwazî û pêşkeftinê ve girê bidin. **Dergush.com**

## Xox Û Faydeyên Wê Bo Leşê Mirov



Xox di hunera cîhanê de, sembola jiyana dirêj e. Xox ji aliyê Vîtamînên B, C û ji aliyê Potasyûmê de dewlemende.

Pispor feydeyên Xoxê bi awayê jêrîn rêz dikin.

ji bo Gurçikan baş e û kevirê Gurçik dihelîne. Bêhna devê mirov kêm dike. Kurmên roviyê mirov dikuje. Xwînê paqij dike. Rîska krîza dilê mirov kêm dike. Qebiz bûna însan jinav dibe. Kelijîn û herareta leşê mirov kêm dike. Westabûnê kêm dike. Ji bo bêxewiyê baş e û Çermê mirov ji jîndar dike. **Hawar net**

**Encamên rapirsiyek Cîhanî:**

## Belê bo Êrîşa Leşkirî li dijî Îranê



Li gor rapirsiyekî cîhanî a Saziya Vekolînî a Piyo li Amerîkayê, ku di 7'ê Avrîlê heya 8'ê May bi beşdariya 24 Hezar kesan li 22 welatên mezin ên cîhanê de hat encamdayîn, Piraniya xelkê di beşek ji welatên Rojava û hin ji welatên Îslamî, daxwazkar in ku êrîşa leşkirî dijî Komara Îslamî a Îranê bona pêşîgirtin ji destveanîna çekên Etomî bihê encamdayîn.

Ji aliyekî din ve jî Sinator Lîbrmen, yek ji endamên paye bilinde Senaya Amerîkayê di konfiransekî çapemeniyê de ragehand ku ew durpêçên ku di Kongireya Amerîkayê de hatin pesend kirin, gelek bihêz û xwedî bandor in û eva şansê herî dawîn yê Komara Îslamî a Îranê ye berî êrîşa leşkirî. Lê bi berçavgirtina van rapor û nûçeyan, mirov digîje vê encamê ku êdî cîhan jî li rejîmê bêhêvî bûye û bas ji êrîşa nizamî bo ser wî welatî, bûye rojev û nîqaşek micid di nava raya giştî de.

## Xeyal Bû Rastî



Firandina tirimbêlan xeyalek bû. Lê mihendisên kevn yên NASA yê ew xeyal kirin rastî û tirimbêl firandin.

Tirimbêla bi navê "Terrafuiya tranition" hat testkirin û ket firînê. Li gor ku şîrketa "Terrafuiyn" ragihandiye, tirimbêl xwedî hêzek 100 Beygîr e û di seetê de 180 Kîlometro difire. Bi debeyek Benzîn yan Mazotê wê heta 750 kîlometroyî jî karibe bifre.

Şîrketa "Terrafuyin" dibêje ku ji niha de dewlemend ketine dora kirîna tirimbêlê û 40 tirimbêl hatine xwestin. **Dergush.com**

## Koma Dostaniya PE Û Kurd Hate Avakirin



Li bajarê Strasburga Fransayê, Koma Dostaniya Kurd û Parlementoya Ewropayê hate damezirandin.

Ev demek dirêj e ku Kurdên derweyî welêt hewil didan ku pirsa Kurd bidin nasîn. Hate ragihandin ku ji 10 endamên cuda yên Yekîtiya Ewropayê, zêdetirî 15 Parlamenterên PE' yê û Şêvirmendên wan beşdarî civîna avakirinê bûn.

Bi vî awayî yekemîn Koma Dostaniya PE'yê û Kurdan piştî hilbijartina dawîn a PE'yê, hate avakirin. Koma dostaniyê wê di dema betaliya Havînê de û di mehên Payîzê li Parlamentoya Ewropayê de konfiransa Kurd lidar bixin.